# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 103 23 - 29 Gûlan 2016 basnuce.com




Dr. Elî Teter

## Bakûr piştgirê referandûmê ye

R12

Rêkeftina YNK - Goran

# Yekîtiya netewî an dubendiya herêmî?



Di 100. salvegera Peymana Sykes-Picot de li RHK'ê ji bo pêkanîna referandûma serxwebûnê girîngiya "yekîtiya netewî" tê gotûbêj kirin. Lê di demek wiha de, rêkeftina di navbera Goran û YNK'ê rê ji guman û gotûbêjên nû re vekir. Tê gotin ku Goran ji bo avakirina blokek li dijî PDK'ê û guhertina hevsengiyên hêz, xwe nêzîkê YNK'ê dike.

Di vê serdemê de ku weke "pêvajoyek dîrokî" tê binavkirin, Îran jî hewla kûrkirina nakokiyên navbera hêzên kurdî dide. Di demek wiha de, bi rêkeftina YNK û Goran pêvajo werarê aliyek din dibe. Di navenda gotûbêjan de pirsa sereke niha ev e; Wê rêkeftina Goran û YNK'ê xizmeta yekîtiya netewî bike an wê bibe sedema perçebûneke nû?

R02-3



Musa Kaval:

## Hemû şertên serxwebûnê hene

"Sedsalên borî de zêdetirî 34 welat û xelk bi rêya referandûmê bûne dewlet. Ev pêvajoyekî qanûnî û însanî ye. Mafê kurdan jî weke gelên din heye bo referandûmê. Ev hemû bi rêya rapirsiyê gihiştin mafên xwe."

R08-9

Mesrûr Barzanî:

## Nabe berjewendiyên biçûk bibin astengê serxwebûnê

"Ez bi vê helkeftê daxwaz ji tevahiya cîhanê û bi taybetî gelên Rojhilata Navîn dikim rêz ji qurbanîdana gelê kurd û biryara gelê kurd bigirin û ew helwesta me bi destpêşxeriya aştiyane û çareseriya bingehîn binirxînin û hevûdu bi dost, cîran, hevbeş û yeksan qebûl



R04

Mesûd Barzanî:

## Peymana Sykes-Picot bi dawî bûye!

R04

## Êdî zirxê parlementeran tune ye

R06

Gundiyên Herbecînê:

## Kamyon bi qestî hat teqandin

R07

## Operasyona Reqqayê destpê dike

R10



# Rêkeftina YNK û Goran li dijî PDK'ê hatiye kirin?

Zeyat Brusk

Di 100. salvegera Peymana Skeys-Picot de li RHK'ê ji bo pêkanîna referandûma serxwebûnê girîngiya "yekîtiya netewî" tê gotûbêj kirin. Lê di demek wiha de, rêkeftina di navbera Goran û YNK de rê ji nîgeranî û gotûbêjên nû re vekir. Tê gotin ku Goran ji bo avakirina blokek li dijî PDK'ê û guhertina hevsengiyên hêz, xwe nêzîkê YNK'ê dike.

Di vê serdemê de ku weke "pêvajoyek dîrokî" tê binav kirin, Îran jî hewla kûrkirina nakokiyên navbera hêzên kurdî dide. Di demek wiha de, bi rêkeftina YNK û Goran pêvajo werarê aliyek din dibe. Lê di navenda gotûbêjan de jî pirsa sereke ya tê kirin ev e; Gelo wê rêkeftina Tevgera Goran û YNK'ê xizmetê ji bo yekîtiya netewî bike an bibe sedema perçebûnek nû?

Rêkeftina ji 11 beş û 25 xalî ya di navbera Tevgera Goran û YNK'ê de, li Herêma Kurdistanê bû sedema gumanên perçebûnek nû. Rêkeftina ku li mala Sekreterê Giştî yê YNK'ê Celal Talabanî hate morkirin, li Hotêla Şerê Ciwan ê Silêmaniyê bi civînekê çapemeniyê hate ragihandin. Berpirsên YNK'ê û Tevgera Goran di daxuyaniyên xwe de diyar dikin ku ev rêkeftin bi armanca derbaskirina qerana siyasî û aborî ya RHK'ê, pêkanîna dadmendiya civakî û çareserkirina pirsgirêkên perwerde û dadweriyê, herwiha bi armanca bi rêxistina gelê Kurd hatiye kirin. Lê PDK'ê li hember vê yekê nerazîbûna xwe derbirî û diyar kir ku xalên vê rêkeftinê wê bibin sedema kûrkirina pirsgirêkên navxweyî.

## PDK: Ji bilî îradeya gel em tu îradeyek din nas nakin

Navenda Giştî ya PDK'ê bi daxuyaniyekê da zanîn ku ev rêkeftin wê xizmeta çareseriya pirsgirêkên navxweyî neke û hişyarî da ku wê rê li ber rewşên nexwestî veke. Di daxuyaniyê de rexne li YNK'ê jî hate girtin û hate gotin ku YNK weke hevpişkek stratejîk ê PDK'ê, beriya rêkeftinê li gel wan neşêwiriye û agahdar nekiriye, lewma jî helwestek berovajiyê rêkeftina stratejîk nîşan daye. Herwiha hate gotin ku wê PDK ji bilî îradeya gel, ti îradeyekê nas neke.

Di 100. salvegera Peymana Sykes - Picot de, ku RHK'ê ji bo serxwebûnê yekîtiya netewî hildaye rojeva xwe û piştgiriya girseyî ya ji bo referandûmê her gav mezin dibe, rêkeftina di navbera aliyan bû sedema nîqaş û giriftek nû yê siyasî.

## Ji nav YNK'ê li hember rêkeftinê nerazîbûn

YNK û Tevgera Goran, piştî rêkeftinê, ji bo çavdêriya pêkanîna xalên rêkeftinê û herwiha ji bo danûstandina ligel partiyên siyasî yên RHK'ê û rêveberiya Bexdayê biryara damezrandina desteyek hevbeş dan. Ji aliyê din ve, ji bilî PDK'ê, di nava herdu partiyan de jî li dijî rêkeftinê nerazîbûn derketin pêş. Bi taybet beşdarnebûna rêveberên payebilid ên YNK'ê Mele Bextiyar, Erselan Bayîz, Azad Cûndiyanî, Mehmûd Sengawî û Hemeyê Heme Seyîd ya civîna rêkeftinê weke nîşana perçebûna nav YNK'ê hate nirxandin. Ji aliyê din ve jî, Endamê Encûmena Giştî ya Tevgera Goran û Serokê Şaredariya navçeya Xebat a Hewlêrê Ferset Salih Herkî, weke nerazîbûnek li dijî rêkeftina herdu aliyan, ji partiya xwe îstîfa kir.

Derbarê rêkeftinê de li ragihandina Başûrê Kurdistanê îdîayên cûda ketin rojevê. Li gor van îddîayan Tevgera Goran bi vê rêkeftinê hewl dide YNK'ê bikêşe aliyê xwe û li hember PDK'ê bibe xwedan hêzek mezin, herwiha hewl dide rêkeftina stratejîk a di navbera PDK û YNK'ê de têk bibe. Ji aliyê din ve, îddîayên weke, "Dewleta Îranê ji bo paşvexistina serxwebûnê û kûrkirina nakokiyên di navbera hêzên kurdî de, li pişt perdeyê ve piştgiriya vê rêkeftinê dike" derdikevin pêş. Herwiha balkêş bû ku bi tevê vexwendina nûnerên hemû welatên biyanî yên li Herêma Kurdistanê, tenê berpirsên Îranê beşdarê civîna ragihandina rêkeftinê bûn.

Derbarê karîgeriyên rêkeftina YNK û Goran a li ser siyaseta giştî ya RHK'ê û herwiha proseya referandûmê BasNûçe ligel siyasetmedar û akademîsyenan axivî.

## Ji PDK Yasîn Taha: Hewldanên ji bo berbestkirina PDK'ê wê negehin encam

Derbarê rêkeftina navbera Tevgera Goran û YNK'ê de Parlamenterê PDK'ê yê Parlamena Kurdistanê Mihemed Elî Yasîn Taha ji bo BasNûçe axivî û diyar kir ku wan weke partî li hember vê rêkeftinê helwesta xwe bi awayek eşkere ragihandiye û bi ti awayî, ti hewldan an jî rêkeftinên ku bi armanca berbestkirina PDK'ê hatine kirin, wê negehin encam. Yasîn Taha got: "Ev serdem ji bo diyarkirina çarenivîsa gelê kurd serdemek hestyar e. Bi armanca serxwebûnê em piştgirî didin yekbûna hêzên kurd. Weke PDK me armanca xwe zelal kiriye ku ew jî serxwebûn e. Emê li hember hemû hewldan û rêkefinan bin ku li dijî vê armancê dibin asteng. Di rêkeftina Goran û YNK'ê de behsa çalakkirina parlamento, hikûmet û herwiha guhertina sîstema siyasî dike. Lê armanc ne ev e. Heger wiha ba wê PDK'ê jî pişgirî bidayê. Armanc beralîkirina PDK'ê û wergirtina biryaran e. Beriya niha jî xwestin di nava parlamenê de vê yekê biceribînin. Dema ev yek jî nebû, xwestin xelkê li dijî hikûmetê sor bikin. PDK, jixwe ne li dijî sîstema parlamenteriyê ye."






Yasîn Taha balkêşan ser rêkeftina stratejîk a 10 salî ya di navbera PDK û YNK'ê de û wiha axivî: "Di navbera YNK û PDK'ê de bi armanca parastina destkeftiyên Kurdistanê û pêşxistina polîtîkaya navxwe û derve, di 27'ê Hezîrana sala 2007'ê de "Rêkeftina Stratejîk" hate morkirin. Lê di vê heyamê de, di her derfetê de YNK'ê li gor biryarên vê rêkeftinê nemeşiya, rêkeftin binpê kir. Rêkeftina di navbera Goran û YNK'ê de jî bi awayek zelal pêngavek binpêkirina rêkeftina stratejîk e. Ez wesa dibînim ku wê ji vî şûnde PDK ligel YNK'ê rûne û jêpirsîna rêkeftina stratejîk bike û armanca rêkeftina ligel Goran bipirse."

## Ji YNK Ebdullah Bor: Rêkeftin ne li dijî PDK'ê ye

Derbarê nêzîkbûna YNK û Tevgera Goran, Endamê Mekteba Siyasî ya YNK'ê Ebdullah Bor ji bo BasNûçe axivî û diyar kir ku ne rast e armanca rêkeftinê bê berovajî kirin. Bor got: "Divê di navbera hemû partî û hêzên kurdî de yekîtî û hevgirtin çêbibe. Di nav xalên rêkeftina YNK û Goran de, amaje bi yekîtiya netewî û ji bo serxwebûnê jî lihevkirina netewî heye. Jiber vê yekê, rêkeftin ne li dijî PDK'ê yan jî aliyek din e. Em weke Pêşmerge îro li eniyên şer, li hember dijminek hevpar, ji bo parastina xaka Kurdistanê şer dikin. Heger yekîtiya me ya siyasî nebe ma wê çi wateya vê şerî hebe? Dîsa ev yekîtî nebe, ma wê daxwaza serxwebûn û azadiya gelê me çawa pêk bê? Ji ber vê yekê jî rêkeftina di navbera Goran û YNK'ê bi armanca sererastkirina navmala kurd e."

Ebdullah Bor daxuyand ku wê rêkeftina Goran û YNK'ê nebe sebeba jinavçûna "rêkeftina stratejîk" a navbera YNK û PDK'ê û diyar kir ku divê partiyên siyasî jî banga yekîtiyê bikin. Bor ragihand ku êdî şerê birakûjî nabe û gelê Kurdistanê jî destûra rêveberiyek du serî nade û got: "Peymana Sykes-Picot 100 salên xwe bidawî hişt û niha ji bo gelê kurd rûpelek nû destpê dike. Jiber vê yekê jî, her pêngavekê ku ji bo yekîtiya hêzên kurd bê kirin, wê destê me bihêztir bike. Di xalên rêkeftinê de banga yekîtiyê li hemû hêzên kurd jî tê kirin. Rêkeftina stratejîk a di navbera PDK û YNK'ê de di dema xwe de ji bo yekîtiya kurdan rolek girîng lîst. Pêşiya şerê birakujî girt û ew qonaxa reş bidawî kir. Rêkeftina Goran û YNK'ê jî vê rêkeftina stratejîk jinav nabe. Ez bawer nakim ku gelê me jî destûra rêveberiyek du serî li Kurdistanê bide."



## Ji Goran Perî Salih Hemîd: Divê Barzanî mezinatiya xwe nîşan bide

Parlamentera Tevgera Goran a Parlamena Kurdistanê Perî Salih Hemîd jî angaşta wê yekê kir ku wê rêkeftina di navbera aliyan de bibe sedema destpêkirina pêvajoyek nû li Başûrê Kurdistanê. Hemîd destnîşan kir ku PDK bi helwesta xwe dibêje 'çima destûr ji min nehate girtin?' û ji ber vê helwestê jî senaryoyên cûda tên rojevê. Hemîd rexne li helwesta PDK'ê girt û got: "PDK li hember pêngavên hemû parçeyên Kurdistanê dibêje, 'çima destûrê ji min nagrin?' ev helwest ne rast e. Kesayetek weke birêz Barzanî ku jiyana xwe ji bo tekoşîna gelê kurd terxan kiriye, divê mezinatiya xwe nîşan bide û ji bo çareserkirina qeyrana RHK'ê hewlên xwe zêdetir bike. Heger hat û PDK ji encamên vê rêkeftinê razî nebe, behsa egera senaryoyan tê kirin ku ev jî ji bo RHK'ê dibin sedema metirsiyê."

Hemîd behsa bandora rêkeftinê ya li ser siyaseta RHK'ê jî kir û diyar kir ku wê encamên girîng ê vê rêkeftinê hebin. Hemîd got: "Em bi hêvî ne ku wê encamên girîng ê vê rêkeftinê hebin. Ev e 25 sal in ku rejîma Baas ji Kurdistanê hatiye derxistin. Di van 25 rojan de rêkeftinên di navbera aliyan de tev de li ser kursî û armancên bazirganiyê bûn û hemû destkeftên Herêma Kurdistanê hatin mezaxtin. Xelk ji vê rewşê ne razî ye û kolan ne razî ne. Divê hêzên siyasî yên kurd vê rastiyê bibînin û bi lezgînî çareseriyan pêş bixin. Rêkeftina di navbera Goran û YNK'ê de jî ji rêkeftinên dema pêş cûdatir e. Ne ji bo kursî û berjewendiyan e. Berovajî, ji bo serweriya yasayan, yekîtiya netewî û dadweriyê ye."

## Siyasetmedar Dr. Mahmûd Osman: Hevgirtina YNK û Goran tişteki nû naafirîne

Derbarê mijarê de siyasetmedar Dr. Mahmûd Osman jî amaje kir ku herdu partî berê yek bûn û Goran ji nav YNK'ê derketiye û lewma jî nêzîkbûna herdu aliyan tiştek xwezayî ye. Osman got: "Goran di sala 2009'ê de ji YNK'ê veqetiya û avabû. Piştî hingî di sala 2012'ê de li Dabaşan di navbera Mam Celal û Noşîrwan Mistefa de bingehê rêkeftina îro hate avêtin. Lê belê jiber nexweşiya Mam Celel ev rê keftin hatibû paşxistin. Di vê pêvajoyê de ji be perçebûna navxweyî ya YNK'ê û dîsa dibe ku jiber negehiştina Tevgera Goran a ji bo armancên xwe li Herêma Kurdistanê, pêdivî kir ku herdu alî xwe nêzîkê hev bikin. Di encama vê nêzîkbûnê de dibe ku dema pêş herdu partî bibin yek jî. Bi nêrîna min ev rewş ji bo herdu aliyan jî dihate çaverêkirin. Wê ev nêzîkbûn jî ji bo RHK'ê rewşek nû neafirîne."

Dr. Mehmûd Osman destnîşan kir ku pêdivî heye partî û hêzên kurd tev de bereyek netewî ava bikin û wiha got: "PDK'ê li hember vê rêkeftinê nerazîbûna xwe derbirî. Di siyaseta kurdan de pêngavên ku perçebûnê kûr dikin, encamên baş naafrînin. Pêwîste di vê serdema dîrokî de hêz û aliyên kurdî weke sala 1988'ê bereyekê netewî ava bikin û ji bo vê hewl bidin. Tenê yekîtiyek bi vê armancê dikare xizmetê berjewendiyên giştî yên gelê kurd û herwiha hemû aliyan bike. Bi nêrîna min, li ser çareseriyek wiha kar bikin ku PDK û aliyên Îslamî jî di nav de beşdar bin û bibin şêrîk, wê baştir be. Bi şêweyek cûda, yekbûna Goran û YNK'ê, ji aliyekê ve yekbûna aliyên Îslamî û aliyê din ve jî PDK'ê û pêkhateyên din, ne xizmeta çalakkirina hikûmetê ne jî ya parlamenê dike."

## Bazyanî: Wê ev rêkeftin bibe sedem ku YNK, Goran û PDK li ser heman mêzê rûnin

Derbarê geşedanên dawî yên li RHK'ê û rêkeftina Tevgera Goran û YNK'ê de akademîsyen û Serokê Tevgera Çaksazî û Geşedanê Mihemed Bazyanî jî ji bo BasNûçe axivî û got ku ew di wê baweriyê de ye ku wê rêkeftina herdu aliyan, partî û hêzên din ên Başûrê Kurdistanê tanbide bo yekgirtinê. Bazyanî got: "Ez berojajiyê wan nêrînan hizir dikim ku dibêjin wê ev rêkeftin bibe sedema perçebûnek nû, jiber vê rêkeftinê wê ji nû ve pevçûnên navxweyî derbikevin an jî rewş ber bi xirabûnê ve here. Rêkeftina Goran û YNK'ê zirarê nade doza kurd li Başûrê Kurdistanê û herwiha zirar nade daxwazên referandûmê jî. Berovajî wê aliyên din jî han bide ji bo yek bigrin. Jiber ku YNK û Goran jixwe li ser heman zemîn û bingehê siyasetê dikin. Ji aliyê din ve di navbera YNK'ê û PDK'ê de rêkeftinek stratejîk heye ku ev rêkeftin hê jî berdewam dike. Bi rêkeftina Goran û YNK'ê wê Goran jî bibe aliyekê vê rêkeftinastratejîk. Bi nêrîna min, ev nêzîkbûn wê rê ji bo wê yekê veke ku PDK, ligel Goran û YNK'ê li ser heman mêzê rûnin û pirsgirêkên xwe gotûbêj bikin û çareseriyan bigerin. Daxuyaniya PDK'ê û nerazîbûna wê ya li hember rêkeftinê jî, aliyê ragihandinê û ya diyar e. Lê ya girîng helwesta pişt perdê ye."

Bazyanî balkêşande ser geşedanên li navçeyê û daxuyand ku ev geşedan dibin sedema guhertina nexşeya navçeyê û got: "PDK jî weke partiyên din rastiya îro ya herêmê û derfeta dîrokî ya li pêşiya gelê kurd dibîne. Em dizanin ku li cîhanê piştî şerên mezin nexşeyên herêman hatine guhertin û gelek dewletên nû di encama van guhertinan de hatine avakirin.Ji ber rewşa li Sûriyê û Iraqê û herwiha şerê DAIŞ'ê, tê payîn ku piştî vê qonaxê nexşeya siyasî ya herêmê bê guhertin. Misoger e ku wê ev guhertin ligel xwe dewleta kurdan jî bîne. Li hember vê rewşê, dema ez li helwest û rewşa PDK'ê, Goran û YNK'ê berwird dikim û şirove dikim, dibêjim ku aliyên wan ên hevbeş, zêdetir e ji aliyên nakok. Referandûm û serxwebûn daxwazê hebeş ê hemû kurdan û gelê kurd e. Gel di vê mijarê de îradeyek yekgirtî nîşan dide. Bi nêrîna min ti aliyek nikare li dijî vê îradeyê gavekê biavêje."

### Mesûd Barzanî:

# Peymana Sykes-Picot bi dawî bûye!



Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, bi helkefta 100 saliya Peymana Sykes-Picot, peyamek weşand û ragihand, ji wê roja ku Peymana Sykes-Picot hatiye îmzekirin heta niha, gelên Kurdistan, Iraq û Rojhilata Navîn rûyê aştî û aramiyê nedîtine. Barzanî eşkere kir ku Peymana Sykes-Picot e ku sala 1916'ê di navbera Brîtanya û Fransa de ji bo parvekirin û parçekirina Kurdistan û Rojhilata Navîn hatibû îmzekirin û diyar kir ku piştî peyman hat îmzekirin şer, belengazî û wêrankarî bûye para kurdan û ji wê demê ve heta niha gelê Kurdistanê û gelên Rojhilata Navîn rûyê aştî û aramiyê nedîtine.

Barzanî di peyama xwe de wiha got: "Sed sal bi ser Peymana Sykes-Picot de derbas dibe. Ev peyman bû sedema wê yekê ku piştî Şerê Cîhanê yê Yekem, Rojhilata Navîn parçe bibe bêyî ku xwest û demografiya herêmê li ber çav bê girtin, ji ber wê jî zilmek mezin li gelên herêmê bi taybet gelê Kurdistanê hat kirin. Encama wê peymanê dewleta Iraqê bû û ew jî ji bo gelê kurd karesat bû. Ew dewleta ku li ser bingeha şirîkatiya du netewên serekî, kurd û ereb, hatibû avakirin, di piratîkê de şirîkatiya kurdan hat piştguhxistin û zilm û zordariyek mezin ji aliyê dewlet û hikûmetên Iraqê ve li dijî gelê Kurdistanê hat kirin. Para gelê Kurdistanê ji wê şirîkatiyê, enfalkirina 12 hezar gencên feylî, 8 hezar Barzanî û 182 hezar kurdên devera Germiyan û deverên din, kîmyabarana Helebce û wêrankirina 4 hezar û 500 gund, asîmîlasyon, şer û qirrkirin bû."

Barzanî diyar kir ku piştî raperîna 1991'ê, gelê Kurdistanê xwest rûpelek nû bi dewleta Iraqê re veke û gelê Kurdistanê rêka tolhildanê hilnebijart lê hikûmeta Iraqê li ser zilm û serkutkariyên xwe rijd bû û wiha got: "Piştî sala 2003 û rûxana rêjîma Baas, gelê Kurdistanê ji bo nû avakirina Iraqê li ser bingeha şirîkatî, demokrasî û federalîzmê hemû şiyana xwe bikar anî ji bo ku rewşa Iraqê baştir dibe, Destûr were nivîsandin û şirîkatî û lihevkirin çêbibe. Lê di piratîkê de Destûr nehat bicîhanîn û hikûmeta Iraqê şirîkatî binpê kir û nanê xelkê Kurdistanê qut kir. Şer, karesat, alozî, radîkalîzm û bêparbûn encamên wê peymanê bûn ku bi darê zorê gel û pêkhateyên Rojhilata Navîn bi taybet yên Iraqê pêkve girêda. Ji wê dema ku ev bûyer qewimiye ve heta niha, gelên Kurdistan, Iraq û Rojhilata Navîn rûyê aştî û aramiyê nedîtine."

### Mesrûr Barzanî:

# Nabe berjewendiyên biçûk bibin astengê serxwebûnê



Şêwirmendê Civata Ewlekariya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî, bi helkefta sedemîn salvegera Peymana Sykes-Picot de li ser navnîşana xwe ya tora civakî peyamek weşand û ragihand ku nabe rê bidin ku lîstokên siyasî û berejwendiyên biçûk yên hêz û partiyan yan jî berjewendiyên taybet yên takekesî bibin asteng li pêşiya serxwebûnê.

Mesrûr Barzanî di peyama xwe de got: "Îro 100 sal bi ser Peymana Sykes-Picot de derbas dibe ku bo beşeke mezin ji xelkê deverê bi taybetî gelê kurd tijî wêrankarî, bindestî û nadadperwerî bûye. Rojhilata Navîn jî ji wê rojê ve aştî û aramî nedîtiye, ji ber ku destnîşankirina sînoran û dabeşkirina deverê ji bo parastina berjwendiyên hêzên mezin yên wê demê bû, bêyî ku xwestek û xweziyên neteweyên cuda yên deverê bo biryardan li ser çarenivîsa xwe li ber çavan werin girtin û berejwendiyên wan jî bên dîtin."

Barzanî diyar kir ku di encama wê şaştiya dîrokî de navçe rastî qeyran, şer û wêrankariyên gelek mezin hatiye û gelê kurd jî qurbaniyên gelek zêde daye bo parastina nasnameya xwe û wiha berdewam kir: "Niha dem dema vê yekê ye ku her kes li ser vê şaştiya tirajîk li xwe mukir were, ji bo serrastkirina wê sitem û nadadperweriyê jî lazim e ji xelkê deverê re rê were dayîn da ku biryar li ser maf û çarenivîsa xwe bidin."

Barzanî got divê gelê kurd ti careke din rê nede tu hincetekê û hêz yan jî aliyekî ku bi çarenivîsa wî bilîze û derfeta ku hatiye afirandin, ji dest biçe û wiha got: "Divê gelê me bi xwe biryar li ser çarenivîsa xwe bide û ber bi serxwebûnê ve gavan bavêje. Serxwebûn ji dil destpê dike lewre pêwîst e em bixwazin ku ser bi xwe bibin heta ku serxwebûn bidest bixin û serbixwe bibin. Nabe em rê bidin ku lîstokên siyasî û berejwendiyên biçûk yên hêz û partiyan yan jî berejwendiyên taybetî yên takekesî bibin asteng li pêşiya vê armancê. Eger em bi xwe bindestiyê qebûl nekin wê demê ti hêzek nikare me biçewsîne, bila em bi xwe biryar bidin û rê nedin ti kes û aliyek di şûna me de biryar bide, bila em ji vê zêdetir rê nedin ku bi hincetên bêbingeh yên weke "niha ne dema vê ye", "rewş jê re neguncav e."

Barzanî di peyama xwe de diyar kir ku dema vê yekê ye ku gelê kurd bi xwe biryara xwe bide û wiha berdewam kir: "Lewma ez bi vê helkeftê daxwaz ji tevahiya cîhanê û bi taybetî gelên Rojhilata Navîn dikim rêz ji qurbanîdana gelê kurd û biryara gelê kurd bigirin û ew helwesta me bi destpêşxeriya aştiyane û çareseriya bingehîn binirxînin û hevûdu bi dost, cîran, hevbeş û yeksan qebûl bikin."

Çinar Doskî

### Ji bo serxwebûnê înîsiyatîfa sîvîl

# "Belê bo Rapirsiyê"



Di 100 saliya Peymana Sykes-Picot de kurdên Başûr ji bo gehiştina dewletek serbixwe destpêşxerî û çalakiyên cihereng pêş dixin. Çalakvan Hêmin Mîranî ku li Brîtanyayê dijî, li ser torên civakî helmetek komkirina wajoyan a bi navê "4'ê Cotmahê Roja Rapirsiya Serxwebûna Kurdistanê" destpê kir. Herwiha destpêşxeriya "Belê bo Serxwebûnê" roja 16'ê Gulanê di 100 saliya Peymana Sykes-Picot de li Hewlêrê "Karnavala Pişgiriya Rapirsiyê" saz kir. Herdu çalakî jî ji aliyê gel ve bi germî hatin pêşwazî kirin. Di heman rojê de li bajarê Kolnê ya Almanyayê, bi armanca nerazîbûna li dijî Peymana Sykes-Picotê kurdan çalakiyek lidarxistin.

**Li Hewlêrê Karnavala piştgiriya serxwebûnê**

Destpêşxeriya "Belê bo Serxwebûnê" ku ji aliyê komelek çalakvanên Başûrê Kurdistanê ve hatiye damezrandin, roja 16'ê Gulanê, wate roja 100 saliya Peymana Sykes-Picot de li paytexta RHK'ê Hewlêrê, "Karnavala Piştgriya Rapirsiyê" saz kir. Karnavala ku bi pişgiriya saziyên sîvîl hate sazkirin, Parêzgarê Hewlêrê Newzad Hadî, Serokê Koma PDK'ê ya Parlamena Kurdistanê Omîd Xoşnav, Parlamentera Tirkmen a Parlamena Kurdistanê Mûna Qehwecî û gelek berpirsên hikûmî û herwiha welatî jî beşdar bûn. Meşa ku li ber Hotêla Sharaton destpêkir heta ber Kelha Hewlêrê ya dîrokî berdewam kir.

Di meşê de dîmenên rengûreng hebûn. Welatiyên ku beşdarê meşê bûn tabûtek ku li ser nivîsandibû "Sykes-Picot mir" rakirin. Herwiha komek siwarên hespan û Pêşmergeyên Şoreşe Îlonê jî bi cilûbergên xwe yên neteweyî çalakî xemilandin. Çalakvanan tîşortên ku li ser nivîsa "Belê bo Rapirsiyê" liber kirin û bi tevê alên Kurdistanê, flamayên ku li ser nivîsandibû "Kurdistanê êdî ne perçeyek Iraqê ye, Em ne Iraqî ne, em Kurdistanî ne, Belê bo Rapirsiyê" bilind kirin.

Endamên destpêşxeriya "Belê bo Serxwebûnê" derbarê çalakî û rêxistina xwe de ji bo BasNûçe axivîn.

**Şikak: Gelê me bo referandûmê amade ye û bo serxwebûnê jî dibêje belê**

Endamê destpêşxeriya Belê bo Serxwebûnê rojnamevan Hêmin Şikak da zanîn ku destpêşxeriya wan ji 50 çalakvan û xwebeşxan pêk tê û got: "Piraniya endamên destpêşxeriya me li Hewlêrê dijîn. Lê di nav me de hevalên ji Silêmaniyê, Duhokê, Kerkûkê, Helepçe û Germiyanî jî hene. Ev destpêşxerî di sala 2015'ê hate damezrandin û par jî çalakiyek bi navê Piştgiriya Pêşmerge saz kir. Çalakiya me ya vê carê karnavala piştgiriya rapirsiyê bû ku di roja 100 saliya Peymana Sykes-Picot de hate pêkanîn. Vê peymanê bi awayek nepenî Kurdistan perçe kir. Me ev karnaval weke erkek nîştîmanî saz kir û piştgiriya xwe ya ji bo banga Serokê RHK'ê ya rapirsiyê nîşan da. Di dema çalakiyê de me tabûta Skeys-Picot rakir ku peyama vê jî ew bu; ev peyman ji bo gelê kurd miriye. Dem hatiye ku kurd bixwe derbarê çarenivîsa xwe de biryar bidin. Piştgiriyek mezin bo karnavalê hebû. Ji bajarê Kerkûk û bajarên din xelk bi otobûsa hatin beşdarê karnavalê bûn. Ev yek jî nîşan dide ku gelê me ji bo referandûm û serxwebûnê amade ye."

**Hesen: Armanca karnavalê motîvekirina gel bo rapirsiyê bû**

Endamek din ê destpêşxeriya Belê bo Serxwebûnê Necmedîn Hesen jî diyar kir ku ji bo Karnavala Pişrgiriya Rapirsiyê Hewlêr navendek giring e û cihê destpêkirina rêzeçalakiyan e û da zanîn ku heta rapirsî bê kirin wê bi çalakiyên cihereng pêk bînin. Hesen got: "Me li Hewlêrê dest bi çalakiya xwe kir. Heta rapirsî bê kirin jî emê bê deng nemînin. Heta rapirsiya ku çarenivîsa Kurdistanê diyar bike, bê kirin wê çalakiyên me li bajar û navçeyên Duhok, Zaxo, Silêmaniyê, Helepçe, Kerkûkê, Germiyan, Soran û Raperînê jî berdewam bikin û piştgiriya xelkê bigrin. Armanca vê karnavalê motîvekirina gel bo rapirsiyê bû. Me di 100 saliya Peymana Sykes-Picot de ev karnaval sazkir û bi vî awayî peyamek şande cîhanê û Iraqê û ji wan re gotku gelê kurd ji bo rapirsiyê amade ye û daxwaza serxwebûnê dike. Ev di heman demî de fişarek bû li ser partiyên kurd da ku ji bo serxwebûnê amade bin."

Hesen tekez kir ku endamên destpêşxeriya Belê bo Serxwebûnê tev ji kesên xwebexş pêk tê û wiha derdewam kir: "Bêguman em ê destpêlxeriya xwe li gor çalakiyên xwe berfereh bikin. Ev karek xwebexşî û dildarî ye. Ji bo sazkirina karnavalê pêwîstiya me bi alav, al û flamayan hebû û ji bo vê jî karsazan, bazirganan û xêrxazan alîkarî dane me. Ez bawer dikim ku wê gelê me jî heman awayî beşdarê rapirsiyê bibe û ji bo serxwebûnê bêje erê."

**Kampanyaya "Rapirsiya Serxwebûna Kurdistanê" ya li ser torên civakî**

Kurdê ji Başûr yê bi navê Hêmin Mîranî ku li Brîtanya dijî û mamostayê zanîngehê ye, li ser torên civakî kampanyayek bo berhevkirina wajoyan a bi navê "4'ê Cotmehê Rapirsiya Serxwebûna Kurdistanê" destpê kir. Derbarê kampanyayê de Mîranî bo BasNûçe axivî û diyar kir ku pisporên siyasî yên cîhanê û sazî û rêxistinên cûda yên lêkolînên siyasî di raportên xwe de amaje bi wê yekê dikin ku Sûriye û Iraq ew du dewlet in ku perçe bûne û divê nexşeya herêmê jî ji nû ve bê danîn. Mîranî got: "Cîhanê dan bi wê yekê daye ku ev herdu welat perçe bûne û ez jî weke kurdekî dibêjim ku divê di nava nexşeya nû ya Rojhilata Navîn de dewleta kurdan jî hebe û kurd bigehin mafên xwe yên ku bi Peymana Sykes-Picot hatibû binpê kirin. Jixwe bi şerê DAIŞ'ê sînorên Başûrê Kurdistanê hatine diyar kirin. Êdî ne gengaz e ku Sûriye û Iraq vegerin ser rewşa xwe ya beriya şerê DAIŞ'ê. Di vê rewşê de çi ma welatê me bi rêveberiyên Bexda û Şamê ve girêdayî be? Jixwe di sala 2003'ê vê rêveberiya navendî ya Iraqê hemû mafên kurdan desteser kir. Jiber çi em ji vê derfetê sûd wernegirin? Mixabin, her çend heta niha di vê mijarê de partiyên kurdan xwedan heman helwestê jî bin, ti pêngavek wan ê berçav nîne. Bi vê kempîn û destpêşxeriyê min xwest ku êdî gel bixwe bibe navenda biryarê û bixwe derbarê çarenivîsa xwe de biryar bide. Bi vî armancî min li ser torên civakî, ji bo referandûm roja 4'ê Cotmehê ya 2016'ê bê kirin, kampanyayek berhevkirina wajoyan destpê kir. Di nava demek kurt de piştgiriyek mezin bo vê kampanyayê hat. Di nav 4 rojan de 6 hezar kesan piştgiriya xwe ragihandin. Ne tenê ji Başûr, ji Bakûr, Rojhilat û Rojava jî gelê me piştgiriyê didin vê kampanyayê. Herwiha, netewe û baweriyên cûda yên Başûr jî piştgirî didin rapirsî û serxwebûna Kurdistanê."

Mîranî amaje bi wê yekê kir ku heta niha jî partiyên kurdan ji bo pêkanîna rapirsiyê biryarek hevbeş nedane û dîrokek bo encamdana rapirsiyê jî diyar nekirine û got: "Ji bo bibe bangek bo partî û hêzên kurdî, me roja 4'ê Cotmeha 2016'3e weke roja pêkanîna referandûmê destnîşan kir. Weke tê zanîn, li Başûrê Kurdistanê 4'ê Cotmeha 1992'yê federalîzm hatibû ragihandin û Parlamena Kurdistanê hatibû avakirin. Me xwest roja 4'ê Cotmehê jî bibe roja pêkanîna rapirsiyê û wergitina biryara serxwebûnê û herwiha veqetandina ji Iraqê. Bi nêrîna min, heger rewşa siyasî ya li Herêma Kurdistanê ev hinde hestyar û bi perçe nebaya, wê projeya me jî piştgiriyek mezintir bidîta. Lê belê, me divê em nîşan bidin ku bêyî berçavgirtina nêrîna siyasî, cûdahiya etnîkî û olî, hemû gelên Kurdistanê piştgirî dide serxwebûnê û dixwaze vê derfeta zêrîn ji bo gehiştina azadî û serxwebûnê baş bikar bîne. Wê kampanyaya me heta roja 4'ê Cotmehê berdewam bike û emê wajoyên xwe û peyama xwe bişînin aliyên pêwendîdar. Wê ev kampanya me di heman demî de bibe peyama yekgirtinê bo partiyên kurd jî."

# Êdî zirxê parlementeran tune ye

Eren Dinç

Li gor yasaya ku hefta borî bi pirraniya dengan hat qebûlkirin, parêzbendiyên parlementerên Meclîsa Tirkiyê hatin rakirin. Bi vî awayî 138 parlamenter ketin bin nîrê girtin an jî darezandinê ku di nava wan de 51 parlamenterên HDP'ê jî hene. Herçend ji bo hemû parlamenteran parêzbendî rabûbe jî, HDP'yî dibêjên armanca vê yasayê ew in.

Teklîfa yekemîn madeya makeqanûnê ya ji bo carekê rakirina parêzbendiyên parlementerên xwedî fezleke di sazûmana giştî ya TBMM'yê de hat qebûlkirin. 531 parlementer tevlî dengdanê bûn, 373 parlementeran dengê "erê", 138'an dengê "na" û 8'an jî ya "bêqerar" dan. 9 parlementeran dengê "vala" dan û rayên 3 parlementeran jî "betal" bûn. Di tura duyem ya teklîfa guherîna makeqanûna derbarê rakirina parêzbendiyên parlementeran de ji bo xala 2'yan li sazûmana giştî ya TBMM'yê dengdayîn pêk hat. Di dengdayînê de xala 2'yan a teklîfa guherînê bi 374 dengên hat qebûlkirin. 526 parlementer tevlî dengdana xala 2'an dibin. 374 parlementer dengê "erê", 136 jî dengê "na" didin. Di dengdanê de 4 "bêqerar", 11 "vala" û 1 jî "betal" hatin hejmartin. Piştî hevdîtinên ser hemû xalan teklîfa parêzbendiyan bi 376 dengên bêyî referandûmê hat qebûlkirin. Li gel derbazbûna qanûnê rêya darizandinê li ber 138 parlementerên xwedî fezleke vedibe.

Li aliyê din HDP di civînên Meclîsa Partiyê û Sazûmana Rêvebirina Navendê dê polîtîkayên niha û şûnde diyar bike.

### Ji aliyê CHP'ê ve jî alîkarî hat dayîn

Di dengdayîna yekem xala pêşnûmayê de 350 "erê", 148 "na", 5 " bêqerar", 27 "vala" û 1 " betal" ray hatin avêtin. Bi temamî 531 parlementeran ray avêtin. Di xala duyem de 357 "erê", 149 " na" 17 "vala" û 6 "bêqerar" ray hatin avêtin. Bi temamî 529 ray hatin avêtin. Li gor encama derketiye holê, ji xeynî parlementerên MHP'ê hinek yên CHP'ê jî di dengdayînê de bi "erênî" ray avêtine.

### Ji 138 parlementerên re riya darîzandinê vebû

Ji 138 parlementerên xwedî fezleke rêya darîzandinê vedibe û hejmara temamiya dosyeyên derbarê van parlementeran de 667 e. Ji van 46 ên AKP'ê, 192 yên CHP'ê, 40 yên HDP'ê, 20 yên MHP2ê û 5 jî yên xweseran in.

### Dê çi bibe?

Rakirina parêzbendiya qanûnî ya parlementeran tê wateya rabûna endamtiya meclîsê. Rakirina parêzbendiyan riya darizandinê li ber wan parlementeran vedike ku di derbarê wan de bi îsnada sûcî dosye hatine amadekirin. Bi riya hukmekî kesîn an jî kêmkirinê ketina parlementeriyê, ji Sazûmaniya Giştî re agahdarkirina biryara mehkemê ya derbarê vê meseleyê çêdibe. Dema biryar li Sazûmaniya Giştî tê xwendin parlementerî radibe. Qanûn ji bo erêkirinê ji Serokkomariyê re tê şandin. Ji bo lênihêrînê 15 roj wextê Serokkomariyê heye.



Li rûniştinên sazûmana giştî ya TBMM'yê teklîfa qanûna rakirina parêzbendiyên parlementeran bi 376 dengan hat qebûlkirin. Bi derbazbûna qanûnê rêya darizandinê li ber 138 parlementeran vedibe ku derbarê wan de fezleke hene.

### Dosye dê di 15 rojan de bên şandin

Di tarîxa qebûlkirina teklîfa guhertina makeqanûnê de, dosyayên derbarê rakirina parêzbendiyên parlementeran yên gihîştine merciyên derbarê lêpirsînê de xwedî biryar; Serdozgeriyên Komarê û dadgehan, Wezareta Dadmendiyê, Serokwezîrtiyê, Serokatiya TBMM'ê an jî endamên Makeqanûn û Komîsyona Dadmendiyê, hebin jî bêyî biryara Meclîsê piştî hilbijartinê yan berî hilbijartinê, parlementer nikarin bên girtin, darizandin, binçavkirin. Bi guhertina xala 83'an a derbarê "parêzbendiya qanûnî" ev şert ji holê hat rakirin. Piştî 15 roj ser derbazbûna sazkirina dosyayên derbarê rakirina parêzbendiyên parlementeran ku li Serokatiya Komiyona têkilhev ya Dadmendî û Makeqanûnê de, Serokatiya TBMMê de, Serokwezîriyê de, Wezareta Dadmendiyê ne dê carek din ji merciyên eleqedar paşve bên şandin. Parlementerên partiyên li meclîsê xwedî kom ji Basnûçê re rewş nirxandin.

### Ji HDP'ê Beştaş: Ev derbe ye, CHP'ê jî alîkarî da

HDP, CHP û AKP derbarê rakirina parêzbendiyên parlementeran ji BasNûçe'yê re axivîn. Meral Danış Beştaşa parlementera Edene'yê ya HDP'ê got ku, ew li pişt gotinên xwe yên berê ne û wiha berdewam kir; "Ev derbeya Sarayê ye. CHP'ê alîkarî daye derbeya Sarayê. Rêya Serokatiyê rayên CHP'ê bi xwe vekirî ne. CHP li kolanê cuda, li meclîsê cuda dipeyîve û rûyê xwe yê rast derxiste meydanê. Aniha avkêşên aşê Erdoğan in." Beştaş derbarê ji vir û şûnde wiha got; " Ev destdirêjî ji miletî re ye. Em temsîlkarên miletî ne. Em îfadê nadin darizandina girêdayî fermana wan. Ew nikarin parastinê ji me bistînin. Em di pozîzyona lêpirsîn û darizndinê de ne. Ji ber ku tu tişt li gor pîvanên dadmendiyê pêk nayê. Dê têkoşîna me berdewam bibe. Ev biryar alîkariya pevçûnê dike. Ev tê wê wateyê ku bi girtina riya siyaseta demokratîk rêya çiya vedibe.

### Ji HDP'ê İrmez: Xetayek li tarîxa siyasî ya Tirkiyê zêde kirin

Parlementera HDP'ê ya Şirnexê Aycan İrmez bi gotina; "Destdirêjî li kurdan kirin" berteka xwe nîşanî vê rewşa pêkhatî da. İrmez diyar kir ku; "Bi talîmata Erdoğan parêzbendî hatin rakirin û xetayek din li tarîxa siyasî ya Tirkiyê zêde kirin. Wexta mesele dibin kurd, têgihîştina hemûyan yek e." Ev bi naverok û pêkhatina tarîxa xwe ve li derveyî Qanûna Cezayê ye û ji aliyê Makeqanûnê ve jî xelet e. Heke hûn li hiqûqa cezayî binêrin hûn ê bibînin ku prensîba "paşnevegeriya cezayî" heye. Darizandinên cezayî divê ji bo sûcên piştî derbazbûna hikmî bên qebûlkirin. Darizandin ji bo dosyayên berî derbazbûna qanûnê ne. Ev pêkhatin li dijî rêziknameya TBMM'yê ya hundirîn e.

### Ji AKP'ê Aydemir: HDP ne temsîlkarê kurdan e

Parlementerê AKP'ê yê Erzeromê İbrahîm Aydemir diyar kir ku di meseleya kurdan de muxatab milet e û miletê me van ji xwe re wek temsîlkar qebûl nake. Yên li pesnê terorê didin nabin temsîlkarên miletî. Di nava HDP'ê de jî kesên ku taloqî terorê nebûne, hene. Kes nikar destê xwe bide van. Aydemir wiha axivî: " Parêzbendiya temamiya parlementeran rabûye û heke min sûcek kiribe ez ê biçim li hember qanûnê bêm darizandin. Tiştek wisa tune ye ku dê kesek ji parlementoyê bi dest û çeng bê derxistin. Di nava qaîdeyên qanûnê de herkes dê here û bê darizandin.

### Ji CHP'ê Erdem: Derbeyek li pergala parlementer

Eren Erdem ê parlementerê CHP'ê yê Stenbolê jî wiha got:" Ev derbeyek e li pergala parlementer, suîqastek e. Ev suîqast îro bû qanûnî. Ez dixwazim bêjim ku piştî vê meseleyê demokrasiya Tirkiyê zerar dît. Erdem got ku ji xeynî parlementerê AKP û MHPê dê dest bidin parlementerên partiyên din. Ev sekn ji bo tenzîlkirin muxalefeta sereke bû. Bi vê sekna xwe jî encamek serkeftî bi dest xistin. Erdem diyar kir ku, gelek zehmet e ka dê piştî rakirina parêzbendiyan çi bibe û divê li hember binçavkirinan seknek hebe. Erdem wiha berdewam kir: "Hindî ku ez dibînim dê pêvajoya darizandina bi girtin pêk bê. Ev pêvajo dê veguheze encamên nebaş. Pêşiya pergala serokatiyê hatiye vekirin. Piştî vê seetê Erdoğan li gor dilê xwe dikare pergala serokatiyê bîne.

### Ji CHP'ê Tanrıkulu: Kesên îmze avêtiye xeletiyek dîrokî kirin

Parlementerê CHP'ê yê Stenbolê Sezgin Tanrıkulu bertek nişanda û wiha axivî: "Kesên li TBMM'ê ji rakirina parêzbendiya parlementeran re wek "erê" deng dane îmza avêtin xeletiyek tarîxî. Gelek zelal e ku mesele ne parêzbendî û teror in.

### Ji DEP'ê Sakık: Tiştekî ku guherî tune ye.

Parlementerê DEP'ê yê kevin Sırrı Sakık li hember van pêkhatinan bertek nîşan da û got "Ji sala 1994'an heta 2016'an di derbarê meseleya kurdan de tiştek neguheriye. Sakık diyar kir ku çareserkirina bi rêya rêbazên şîdetê li welatî neheqî ye û dema meseleya kurdan dibe rojev em dibînin ku partiyên din çawa di nava yekîtiyekê de tevdigerin. Me carek din dît ku di derbarê mijarên bingehîn yên welatî de nêrînên partiyan neguherîne."





## Gundiyên Herbecînê:

# Kamyon bi qestî hat teqandin

Siwar Bedirxan



Kamyona bombebarkirî di 12'ê Gulanê de di navbera gundên Herbecîn û Baqewsê yên Sûra Amedê de teqiya. Rayagiştî ji teqînê zêdetir li ser daxuyaniya PKK'ê ya di derbarê teqînê de rawestiya û ew hat rojevê. Li aliyê din bêdengiya saziyên nêzî PKK û HDP'ê jî tê nîqaşkirin.

Herwiha PKK beriya ku ev teqîn pêk were li navenda Amedê bi wesayîteke bombekirî êrîşî wesayitekî polîsan kiribû û di encama wê teqînê de sê endamên HDP'ê yên ji aliyê polîsan ve hatibûn destgîrkirin bûbûn qurbanî û 45 kes jî birîndar bibûn.

PKK piştî teqîna li gundê Herbecînê ragihandibû ku gundiyên di encama teqînê de bûne qurbanî hevkarê dewletê ne. Herwiha PKK'ê îddîa kiribû ku kamyona bombebarkirî ji bo cihekî din dihat veguhestin û ew kamyon di encama gulebarana gundiyhan de teqiyaye û divê rayagiştî û xelk jî wisa bizanibin ku tawana wan di wê teqînê de tuneye.

### Ji 13 kesan 60 kîlo perçeyên cesadan ma

Cenazeyê 4 kesên ku di dema teqînê de di wesaîteke nêzîkî kamyonê de bûn hatibûn tespîtkirin. Cenazeyê 12 gundiyên ku li kêleka kamyonê bûn wenda bibûn. Piştî lêkolînan hatibû zanîn ku cendekên wanê perçebûyî li nav zeviyan belavbûye û di encama lêkolînên DNA'yê jî ji cenazeyên 13 kesan 60 kîlo perçeyê cesedan hatiye dîtin.

### Hikûmet li serxweşiyê ye!

Di medyaya civakî de bûyer weke "Roboskiya PKK'ê" tê destnîşankirin û nîqaşên derbarê teqînê de didomin. Li aliyê din rayedarên hikûmetê jî hatin gund û bûyera ku ji aliyê PKK'ê ve hatibû kirin bi tundî şermezar kirin. Rayedarên hikûmetê rexne li HDP'ê û PKK'ê jî girtin. Wezîrê Navxwe, Efkan Ala, Wezîrê Geşedanê Cevdet Yılmaz,Wezîrê Berê yê Cotkarî û Sewalkariyê Mehdi Eker, Parlementerê Amedê Galip Ensarioğlu, Waliyê Amedê Hüseyin Aksoy serdana konê serxweşiyê kirin. Namzetê Serokatiya AKP'ê Binali Yıldırım jî serdana gundê Herbecînê kir û serxweşî li kesûkarê qurbaniyan kir.

Demirtaş: Tu hincet nayên qebûlkirin

Ligel rêxneyên rayedarên hikûmetê Hevserokê HDP'ê Sellahatin Demirtaş jî kiryara PKK'ê ya li Herbecînê şermezar kir. Demirtaş rexne li daxuyaniya PKK'ê jî girt û wiha axivî: "Tu hincetên maqûl û meşrû yê vê bûyerê tunene. Em eşkere vê kiryarê şermezar dikin û em bûyerên wisa qebûlnakin. Ez dixwazim wê yekê jî bêjim ku daxuyaniya berpirsên vê bûyerê bêberpirsiyariyê. Di bûyereke wisa de tiştê bêkirin ew e ku tawankarên vê bûyerê bêne eşkerekirin û ceza li wan bê birin. Di çalakiyên wisa de yên ku xelkê sivîl hatine qetilkirinde HDP bêdeng nebûye û bêdeng jî nabe."

Kamyona bombekirî ya PKK'ê di navbera gundên Herbecîn - Baqewsê yê Sûra Amedê de teqiya û di encam de 16 gundî jiyana xwe jidest dan. Gund dibêjin kamyona ku 15 ton teqemenî barkirî bû bi zanebûn hatiye teqandin. Gundî bertekê nîşanî daxuyaniyên PKK'ê jî didin û amaje dikin ku PKK wan weke hevkarê dewletê destnîşan kiriye. Li aliyê din diyar bû ku gund dengênderê HDP'ê ye.

### Mazlum Der: Dev ji kuştina sîvîlan berdin

Mazlum Derê jî eşkere kir ku ew vê bûyerê bi tûndî şermezar dikin û divê PKK hesabê vê bûyerê bide. Mazlum Derê bi daxuyaniyekî bang li PKK'ê kir û daxwaz ji PKK'ê kir ku dev ji kuştina sîvîlan berde û nebe hokara tevkujiyê. Herwiha di daxuyaniya xwe de Mazlum Derê rexne li PKK'ê jî kir. Daxuyaniya Mazlum Derê wiha ye: "Em derbaskirina kamyoneke ku 15 ton teqemenî barkirî ye, û di nava gundan de derbasdibe qebûlnakin û çawa ku me daxuyaniyên li ser Komkujiya Roboskê bi tûndê şermezar kirin em van daxuyaniyan jî bi tûndî şermezar dikin. Em bêhurmetiya li dijî miriyan qebûlnakin. Kamyon her çawa hatibe teqandin jî derbasbûna wê kamyonê ya li nava gund nayê qebûlkirin. Serokê Şaxa Amedê ya Mazlum Derê Ali İhsan Gültekin ji BasNûçe'yê re eşkere kir ku ew kuştina sivîlan bi tûndî şermezar dikin.

Li aliyê din Serokê Şaxa Amedê yê Saziya Mafê Mirovan (İHD) Raci Bilici jî, ji rexneyên li ser İHD'ê qebûl nekir û ji BasNûçe'yê re tekez kir ku kuştina sivîlan qebûlnakin û ew ê jî herin gund û raporan li ser qurbaniyan amade bikin.

### Şêniyên gund: Kamyon bi qest hatiye teqandin

Şefik Yakar ê ku di encama teqînê de 16 xizmên xwe spatiye axê, hurguliyên teqînê, daxuyaniya PKK'ê ya di derbarê bûyerê de ji BasNûçe'yê re şîrove kir. Yakar ragihand ku daxuyaniya PKK'ê ya ku gundiyan tewanbar dike ne rast e. Yakar da zanîn ku gotinên PKK'yê yên di derbarê qurbaniyan de bûye sedema xemgîniya wan û PKK'ê qurbanî weke kesên hevkar pênase kiriye.

Yakar ragihand ajarên kamyonê yên PKK'yî li nav gund li birayê wî Seyidxan dane û ji ber wê yekê gundiyan dane pey kamyonê û ew bûyer çêbûye. Yakar bûyer wiha rave kir: "Kamyon derengê şeve li dorûbera gund digere. Seyidxan ji kamyona ku li dorûbera gund digere dikeve şik û gumanê û wê disekinîne. Li wir li Seyidxan didin. Ew jî tê malê ji birayên min re, ji zarokên min û ji gundiyan re dibêje. Ew jî bi pey kamyonê dikevin. Ajorên kamyonê, li nêzîkî şantiyeya qûmê disekinin û hinek li dûrî xwe vedişêrin. Piştî ku gundî digîjin ber kamyonê, êrîşî wan dikin û li wan direşînin. Yên me jî ji bo ku xwe biparêzin dikevin pişt kamyonê. Dema gundî xwe li derdora kamyonê vedişêrin kamayonêji dûrî ve diteqînin." Yakar li aliyê din jî ragihand ku rastiya daxuyaniya PKK'ê tuneye.

### "Gundê me 375 deng daye HDP'ê"

Yakar ragihand ku şêniyên gundên Herbecîn û Baqewsê xizmên hevdû ne û nêzîkî 145 malên wan li wî gundî hene. Yakar, amaje bi wê yekê jî kir ku wan di hilbijartina dawî de 375 ray dane HDP'ê û ji gundê wan ji partiyên din re tenê 20 deng derketine. Yakar, tekez kir ku li gund cerdevan tunene û wiha axivî: "Em herdu gund xizmên hevdû ne. Ez apê wan im. Em hemû xizmên hev in. Zevîyên me hene. Em karên xwe dikin. Bi qestî û bi zanebûn ew kamyon teqandin.16 canê me ji me stendin. Dema ku gundî gihîştin nêzîkî kamyonê wan kamyon teqandin."

Li aliyê din Yakar, ragihand ku Serkotiya Baroya Amedê û Serokatiya Baroya Wanê hewldanê li ser bûyerê lêkolînan bikin û bi wê mebestê bi wî re axivî ne. Yakar anî ziman ku wî jî ji rayedarên Baroyan re tekez kiriye ku divê bûyerê şermezar bikin. Herwiha Yakar anî ziman ku ew ê ji dilsoziya kesên ku Qendîlê şermezar nekin bi guman bin. Yakar destnîşan kir ku Şeredariya Bajarê Mezin a Amedê jî daxwazkiriye ku ji bo serxweşiyê bên gund, lê ew wan qebûl nakin. Yakar, gotinên Selahattin Demirtaş ê di derbarê bûyerê jî de bi bîr xist û ragihand ku axaftina Demirtaş girîng e lêbelê divê HDP jî rastiyan bibine.

### Çelebi Yaman: Herdû aliyan jî ji me re got 'xayin'

Çelebî Yamanê ku di encama teqînê de 2 zarokên wî mirine jî nerazîbûna xwe ji bo medyayê nîşan da. Yaman da zanîn ku medyaya hikûmetê di destpêkê de ew weke "gundiyên xayin" û medyaya PKK'ê jî ew weke kesên qurbanî wek "hevkarê dewletê" nîşan daye. Yaman da zanîn ku piştî rastiya bûyerê derket holê medyaya dewletê hewldaye ku ji ser êşên wan dijberiya PKK'ê bike û ji ser wê êşê siyasetê bike. Yaman, li aliyê din daxuyaniya PKK'ê jî bi bîr xist û eşkere kir ku weke PKK'ê gotiye ew ne hevkarê tu kesî ne û ew kesên sade ne û tenê bi karên xwe re mijûl dibin. Yaman wiha axivî: "Tiştên ku tên kirin tiştên ku tên nivîsandin me aciz dikin. Li ser xwîna û êşa me siyasetê dikin. Hem televîzyon û rojnameyên nêzîkî PKK'ê û hem jî yên nêzîkî dewletê em weke 'xayin' destnîşan kirin. Herdû alî jî ji bo sempatîzanên xwe me dikin xayin. 16 canên me çûn. Em tenê daxwaza wê yekê dikin bila dev ji siyaseta qirêj berdin."

Çelebi Yaman, destnîşan kir ku tu encamek erênî ya şerê çekdarî nagihêjê tu kesî û divê PKK û dewlet dawî li şer bînin. Herwiha Yaman tekez kir ku şerê çekdarî nabe çareserî ye û wiha berdewam kir: "Bi salane dewlet û PKK şer dikin. Heta niha tu encam nestendine. Eger wisa berdewam bike ew ê gelek kes bimrin. Kesên badilhewa tên qetilkirin. Ew ê raporên pisporan derkevin meydanê. Gule çawa kamyonê diteqîne?"



## Dr. Musa Kaval:

# Hemû şertên serxwebûnê hene

“Sedsalên borî de zêdetirî 34 welat û xelk bi rêya referandûmê bûne dewlet. Ev pêvajoyekî qanûnî û însanî ye. Mafê kurdan jî weke gelên din heye bo referandûmê. Ev hemû bi rêya rapirsiyê gihiştin mafên xwe. Ev mînakên baş in ji bo kurdan û ereban. Ji ber ku kurd û ereb wê bi hezaran salan cîranên hev bin. Tu kes naçe tu deran û ya baş ew e ku em du cîranên baş bin.”

Mehmed Salih Bedirxan

Beriya bi hefteyekê sedsaliya Peymana Sykes - Picot rojeva kurdan dagîr kir. Li Başûr, Bakur û Rojavayê di derbarê vê peymanê de konferans û panel birêve çûn û tehrîbata vê peymanê hat gotûbêjkirin. Li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) axaftin û panelên li ser vê peymanê bala hemû cihanê kişand. Di roja sedsaliya vê peymanê de li paytextê RHK’ê li Hewlêrê karnawalek ji bo serxwebûna RHK’ê birêveçû û xelkê kurd ê di karnavalê de gihiştin hev amaje bi wê yekê dikirin ku peymana Sykes - Picot êdî bi dawî bûye û kurd desthilatdariya tu kesî qebûl nakin. Serokê RHK’ê Mesûd Barzanî jî bi minasebeta sedsaliya Sykes – Picotê peyamek belav kir û amaje kir ku kurdan dawî li vê peymanê aniye û divê kurd bigihên mafê xwe yên siruştî.

Mamosteyê Zankoya Selahadinê Dr. Musa Kaval di derbarê, referandûm û proseya siyasî ya RHK û Iraqê de ji BasNûçe’yê re axivî. Kaval amaje dike ku dema wê yekê hatiye ku kurd û ereb bibin cîranê hevdû û cîrantiya Iraq û Kurdistanê ew ê di berjewendiya herdu aliyan de be.

**Li Bexdayê dawî li siyasetê hatiye. Parlemento hat rûxandin. Êrîşî parlementerên kurd kirin û siyasetmederan kurd vegeriyan. Niha çi li pêşiya Iraqê ye?**

Cenabê Serok Mesûd Barzanî li ser hin prensîban û hinek bingeha berdewam e. Ew jî ev in; kêşe dinav Bexdayê de bi rêya diyalogê bên çareserkirin. Lê her wekî kêşe, qeyran û aloziyên îro li Kurdistanê hene ku aborî û siyasî ne. Diyar e ku Bexda dixwaze arîşeyên heyî weke xaleke lawaziyê bibîne û şertên xwe li ser kurdan ferz bike. Lê ew nizanin ku analîzeke şaş dikin. Ji ber ku kurd hem qebûl nakin û hem jî neheqiya ku li kurdan tê kirin. Niha hevdîtin, danûstandin û peywendî hene ka em ê lê binêrin wê encam çibe. Eger Bexda di ferzkirina şertên xwe li ser kurdan berdewam be, ez bawer dikim ku peywendî wê aloztir bibin. Hikûmeta Bexdayê bi tiştekî wisa digere. Di qonaxa niha de mirov nikare bêje ka wê peywendî wê qût bibin an jî wê dirûvek din bistîne. Niha qûtbûn nîn e têkilî û diyalog berdewam e.

Hêviya me ew e. Divê helwesta kurdan di qada navnetewî de yek be ku daxwazên me bên qebûlkirin. Ji bo ku li Bexdayê û di cîhanê de yek helwestî bidome pêwîst e. Divê stratejiyeke hevbeş hebe. Niha xebatek tê kirin. Gelo wê çi encam derbikeve em li bendê ne. Hêvî heye ku kurd ji vê kêşeyê serkeftî derbikevin.

**Biryar li ser referandûma serxwebûnê jî heye. Herwiha ew jî nêzîk dibe. Ew ê ev prose di demeke nêzde çi tesîrê li rewşa siyasî bike?**

Mesele ji wê biryarê derbastir bûye. Ew biryareke girîng e bêgûman. Legalîteyek û naskirineke navdewletî heye ji bo Herêma Kurdistanê. Kurdistan di wê çarçovê de bingehên dewletê danîne. Dikare bi serkeftin hilbijartinan çeke. Dezgehên demokratîk hatine damezrandin wek parlamento, serokatî, hikûmet. Kurdistan di vê çarçovê de teqrîben 22 sal in dewam dike. Naskirineke navdewletî ji bo Kurdistanê çêbûye. Geşedanek çêbûye, nûnerên dewletan li vê derê ne. Ev qonaxeke cuda ye ku bi awayekî baş derbas dibe. Bingeheke qanûnî ye ji bo kurdan. Ev girêdayî bingeheke qanûnî ye ew jî şarta destûra Netewên Yekgirtî de jî derbaz dibe ew jî mafê çarenûsa gelan e. Kurd gelek in xaleke Netewên Yekgirtî ev yek qebûl kiriye. Êdî kurd mafê xwe yê çarenûsî dixwaze bikar bîne. Ev jî di çarçoveya diyalog û demokratîk de dimeşe ku rêya rast e û bê şer kurd bigihijin mafên xwe. Teqez divê kurd biighijn mafê xwe.

**Barzanî di peyama xwe ya derbarê Sykes - Picotê de destnîşan kir ku Kurdistan û Iraq cîranê hev bin baştir e. Gelo Hewlêr û Bexda dikarin bêşer û bêpevçûn, ji hev cuda bibin?**

Ya rast ev e. Em du miletên cîran in û bi hezaran salene bi hev re dijîn. Serokê RHK’ê Mesûd Barzanî gelek caran ev gotiye. Armanca wî serxwebûneke bê şer û bê xwîn e. Ji bo vê yekê xebat tê kirin. Welatên Îskandînavyayê jî wisa kirin. Di sedsalên borî de zêdetirî 34 welat û xelk bi rêya referandûmê bûne dewlet. Ev pêvajoyekî qanûnî û însanî ye. Mafê kurdan jî weke gelên din heye bo referandûmê. Ev hemû bi rêya rapirsiyê gihiştin mafên xwe. Ev mînakên baş in ji bo kurdan û ereban. Ji ber ku kurd û ereb wê bi hezaran salan cîranên hev bin. Tu kes naçe tu deran û ya baş ew e ku em du cîranên baş bin. Divê sînor jî bi rêya dîyalogê bên destnîşankirin. Divê du dewlet û du milet bi hev re wek du cîranên baş bijîn. Dikarin tifaqê ji bo paşerojê jî bikin li ser aborî, çandî û warên din. Weke Cezayîr û Fransa yê. Niha di navbera wan de gelek tifaq hene. Eger Kurdistan serbixwe be dikare peywendiyên taybet ligel Iraqê dewam bike.

**Serbixwebûna Kurdistanê ew ê çi tesîrê li herêmê bike?**

Bexda gihiştiye wê qenaatê ku kurd bi biryar in û dixwazin mafê xwe bidest xwe ve bînin. Lê Bexda qasî jê hatî di rewşa niha de nahêle ku Kurdistan serbixwe bibe. Di vê derê de xeletiyeke fêhmkirinê ya ereban heye. Iraq ev sedsal e piştî Şerê Cîhanê yê Yekem heta niha tu carî îstîqrar tê de çênebûye. Ya rast ew e bo Iraqê federalîzmeke di nabera şîe û sûnneyên ereb bi xwe de çêbe û mafê diyarkirina çarenûsa xwe ya kurdan jî bê qebûlkirin. Pêdiviya van welatan bi îstîqrarê heye. Eger ereb dîsa şertên xwe li ser kurdan ferz bikin, ev nabe sedema xweşiyê, şahiyê û pêkvejiayeneke azad û bextewar. Dîsa wê bibe sedema nexweşî û gengeşiyê. Ji bo herdu miletan ya baş ew e ku bi kêfxweşî biryara xwe bidin. Eger gelê kurd bi referandûmê qebûl kir ku dewleta xwe ya serbixwe çêbike, ev wê ji bo Iraq û ereban jî baştir be. Ji ber ku sedemên nexweşî û gengeşiyê nemînin. Eger ev jî nema wê bi hev re kar bikin di hemû waran de. Ev ji her tiştî baştir ji bindestî, zor û tedayê. Ji bo wê yekê qenaatek li cem Iraqê jî çêdibe. Gotin hene ku dibêjin Îran, Tirkiye qebûl nakin. Bi ya min ev ne sedemên esas in. Eger kurd û ereban qebûl kir ku ji hev veqetin, tu kes nikare bibe asteng.

**Welatên cîran ji Kurdistaneke serbixwe re amade ne?**

Welatên cîran bi xwe jî meselê şaş fêm dikin. Niha li Tirkiyê ev sed salan tu îstîqrar çêbûye? Înkilabên leşkerî çêbûn nexweşî çêbûn. Niha em dibînin ku şer tê de heye. Nebaş e ku sed salên din jî wiha bidome. Li Iraq û Sûriyê jî heman rewş heye. Dewletên cîran divê wê birdoziya kevn a yeknetew, yekziman û al kirasekî û yekalê berdin. Ev arîşeyan çareser nake û berovajî kurtir dike. Dibe ku nexwezin lê ev mafê kurdan e û divê kurd biryara xwe bidin ne mafê tu kesê ye jî ku li pêşiya vî mafî bibin asteng. Divê kurd jî tifaqa xwe ava bikin û di demk zû de arîşeyên xwe çareser bikin. Piştî ku yekrêziya mala kurdan çêbû gavên din hêsan in.

**Dîplomasiyeke mezin ji bo kurdan heye. Zêdetir 35-35 konsolên welatên biyanî li Hewlêrê ne. Di şerê dijî DAİŞ’ê de piştevaniyeke mezin heye. Gelo mûmkûn e ku ev piştevanî ji bo birayara kurdan ya serxwebûnê jî bidome?**

Wê xurttir jî bike û wê berdewam jî bike. Bawer dikim ku serxwebûna kurdan zûtir be baştir e. Mirov nizane ka wê geşedanên nû rû bidin di Rojhilata Navîn û cîhanê de. Serxwebûna Kurdistanê zirarê nade tu kesî. Wê arîşeyan çareser bike. Gelê kurd li Kurdistana Başûr gelek zilm dîtiye, Enfal, qelîam, erebkirina welatê me, bikaranîna çekên kimyewî, Helebçe û yên din. Jenosîd li dijî kurdan hatin kirin. Piştî van komkujiyan êdî ne hêsane ku kurd û hikûmeta Bexdayê bi hev re bijîn. Kurd vê yekê qebûl nakin. Riya rast ew e kurd zû serbixwe bibin. Dibe ku welatên cîhanê bibêjin em qebûl nakin di fermiyetê de ji ber ku ev bendeke Destûra Netewên Yekgirtî ye. Ev nabe asteng. Ji ber ku di wê derê de benda mafê diyarkirina netewan jî heye. Herdu prensîb jî hene. Em lê dinêrin ku di 1914’an de 54 dewletên serbixwe hebûn. Di van 102 salên borî de dewletên dîtir hemû serbixwe ne û endamên Netewên Yekgirtî ne. Îro di qanûna navdewletî de 197 dewlet hene. Ji wan bes 54 dewlet beriya sedsala 20’an hebûn. Ji ber wê yekê bo çi ev maf ji bo herkesê heye û ji bo kurdan nîn e? Hinek dewlet hene ku gelheya wan qasî ya Hewlerê jî nîn e û serbixwe ne. Ev zilm wê heta kengî were kirin û heta kengî kurd wê qebûl bikin. Eger kurdan serxwebûn qebûl kir tu dewlet nayên kurdan naêşînin ji bo wê yekê.



“Gelek dewlet serbixwe bûn. 34 dewletan referandûm pêk anîn û ji wan rewşa gelekan şertên wan mîna yên kurdan nebûn. Şertên dewletbûnê li cem kurdan gelek pêşketî û bilind in. Mesela Başûrê Sûdanê ne weke Kurdistanê ye. Rewşa aboriyê nabe astengiyeke mezin, petrola kurdan zêde ye, gaza kurdan wê were firotin, erdê Kurdistanê ji bo çandin û sewalkariyê baş e. Rewşenbîrên wê hene, zankoyên wê hene. Di vê mijarê de tu astengî li pêşiya kurdan tuneye.”

**Herêma Kurdistanê tu bername û stratejî ji bo dewletbûnê danîne?**

Belê hemû şertên xwe pêk anîne. Di van sedsalên borî de, gelek dewlet serbixwe bûn. 34 dewletan referandûm pêk anîn û ji wan rewşa gelekan mîna yên kurdan jî nebûn. Şertên dewletbûnê li cem kurdan gelek pêşketî ne û bilind in. Mesela Başûrê Sûdanê ne weke Kurdistanê ye. Rewşa aboriyê nabe astengiyek e mezin.Petrola kurdan zêde ye, gaza kurdan wê were firotin, erdê Kurdistanê ji bo çandin û sewal xwedankirinê baş e. Rewşenbîrên wê hene, zankoyên wê hene. Di vê mijarê de tu astengî li pêşiya kurdan tuneye. Ji bilî kêmasiyên siyasî ku ew li her derê hene. Heyamekê dewam bike jî wê nebe asteng. Vê rewşê li gelek deverên din jî rû daye. Em dibînin kêşeya aborî çêbûye, meaş zû nehatiye dayîn, ev şeş mehe ku mûçe nehatine dayîn, xelk ranebûye nexweşî çênekiriye. Ji bo ku maneya dewletbûn û serxwebûnê dizanin. Ev hest di kurdan de pêşketî ne.

**Li Rojava jî herî dawî kanton hatin ragihandin. Çi li pêşiya kantonên Rojava ye?**

Proseya Sûriyê berdewam e û bi hêsanî jî çareser nabe. Sûriye êdî weke berê lê nayê. Îhtîmale parçe bibe an jî herêmên federal çêbibin. Niha opozîsyon jî û rejîm jî dibêjin Sûriyeke yekgirtî. Lê ew dewleta ku rejîm dixwaze aliyê din naxweze û ya opozîsyon dixwaze vê carê jî rejîm naxwaze. Çareseriya vê yekê jî ew e ku Sûriyeke federal an jî parçbûyî be. Di vê derê de lazim e kurd rola xwe bilîzin. Kêmasî heye ku partiyên kurdan bûne du blok û li dijî hev in û bi hev re kar nakin. Tişta lezgîn ew e ku herdu alî xwe nêzî hevdu bikin. Wê demê jî hem ji Başûr û hem jî ji civaka navdewletî piştgiriyê werbigire. Niha herêmeke mezin di destê PYD’ê de. Ev jî fersendeke başe ji bo kurdan. Lê divê ew jî nebêjin tenê ‘ez.’

**Ew ê yekgirtin û hevgirtin di navbera ENKS’ê û PYD’ê de pêk were?**

Lazim e di vê derê de PYD û ENKS bi hev re kar bikin. ENKS jî divê şaşiya neke. Divê nebêje ku em sedê sed weke hev in ji ber ku herêmek di bin destê PYD’ê de û îdare dike. Divê ENKS vê yekê qebûl bike û divê herdu alî bi hev re biçin û bigihin hev du. Di vê derê de dewletên cîran hez nakin tiştek ji bo kurdan çêbibe. Eger çêbibe jî dewletên cîran wê xera bikin. Eger ENKS jî federasyonê çêbike Tirkiye qebûl nake û PYD jî çêke dîsa qebûl nake. Çare ew e ku bigihin hevdu û ji Tirkiyê re bibêjin ‘em ne li dij we ne’ û jê re bêjin ’we berê nedixwast Herêma Kurdistanê jî çêbibe ku niha cîran û hevalbendên Tirkiyê ne û di nava cîranan de.’ Wê demê wê Rojava û Tirkiye jî neçar bin ku hevalbendiyê bikin. Rojava bibe dewlet jî wê pêwendî hebin. Ji ber ku cîranên hevdu ne û kurd li Tirkiyê hene. Gotina Erdoğan ya ku dibêje ’ev li dij berjewendiyên me ne’ ne rast e. Eger kurd li Rojava dewleteke federal çêbike ENKS jî wê teqez di nav de be. Ji ber ku hilbijartin çêbibe û ev jî dê di bin serpereştî û çavdêriya Netewên Yekgirtî de çêbibe. Wê demê xelkê kurd jî ku bîr û baweriyên cuda hene, dibe ku dengên xwe bidin ENKS’ê. Di hemû haletan de eger li Rojava çi federalî be û çi serbixwe be heta sedê sed di bin destê PYD’ê de be jî dawiya dawîn wê pêwendiyên baş bi Tirkiyê re çêbike. Ji ber ku rê tuneye. Em di qirnê 21’ê de ne.





## YPG tevî 25 hezar şervan tevlî dibe

# Operasyona Reqqayê destpê dike

Şakir Abdülsettar

Hêzên Sûriyeya Demokratîk (HSD) û Yekîneyên Parastina Gel (YPG) demeke dirêj e ji ber rageşiya di navbera DYA û Tirkiyê operasyonên xwe dabûn rawestandin dîsa dest bi operasyonan kirin. Hat zanîn ku hêzên kurd amadekariyan ji bo Operasyona Reqqayê dikin. Çavkaniyên ji herêmê radigihînin ku hêzek ji 25 hezar kesî ku piraniya wan kurd in, ber bi navenda DAIŞ'ê ya li Sûriyê Reqayê ve dimeşin. Herwiha tê payîn ku wê Koalisyona Navdewletî ya li dijî DAIŞ'ê ya di bin pêşengiya DYA'yê de jî, bi firokeyên şer piştgiriyê bidin operasyona HSD'ê û YPG'ê.

Li gor agahiyên ku BasNûçe'yê ji çavkaniyên herêmê girtiye, wê yekîneyên HSD û YPG'ê ji dorûbera Şedadê û Hesekê ve, ber bi Reqayê ve pêşbikevin. Firokeyên şer ên Koalisyona Navdewletî ya li dijî DAIŞ'ê ya di bin serpereştiya DYA'yê de, belavok li ser xelkê Reqayê de avêtin û bang li xelkê sîvîl kirin ku ji bajêr derbikevin. Ev yek jî nîşan dide ku wê operasyon di demek nêzîk de destpê bike. Di belavokan de tê gotin, "ew dema we çaverê dikir hatiye, dema derketina ji Reqayê ye" û herwiha li ser belavokan karîkatûrek jî heye ku têde xelkê sivîl ber bi herêmek kesk ve direve.

### Rojnamevan Elî: McGurk ji bo Operasyona Reqayê hat

Herwiha hat zanîn ku hefteya derbasbûyî Nûnerê Taybet ê Serokê DYA Barack Obama yê Hevpeymaniya Navdewletî Brett McGurk jî hat Kobanê û ji bo Operasyona Reqayê ligelberpirsên Rojava hevdîtin pêk anî. Hate gotin ku McGurk derbarê hûrgûliyên operasyonê de agahî dane berpirsên Rojavayî. Rojnameva Mohammed Elî ku li Kobanê ye, derbarê hevdîtinên McGurk de ji bo BasNûçe'yê axivî û daxuyand ku McGurk ligel Hevserokê PYD'ê Salih Mûslim û berpirsên leşkerî yên YPG'ê hevdîtin kirine û di hevdîtinan de jî Operasyona Reqayê hatiye rojevê. Elî dazanîn ku Nûnerê Obama soza berdewamkirina alîkariyên welatê xwe bo PYD'ê û YPG'ê dubare kiriye. Elî herwiha eşkere kir ku nêzîkê 100 şêwirmendên leşkerî yên Amerîkî kî ligel McGurk gehiştine Kobanê û berpirsên Rojavayî û Amerîkî, piştî Operasyona Reqayê li ser mijara rizgarkirina Minbic û Cerablûsê mijûl dibin. Hêjayê gotinê ye ku Nûnerê Taybet ê Serokê DYA Barack Obama yê Hevpeymaniya Navdewletî Brett McGurk di 30'ê Çileya îsal de jî serdana Kobenê kiribû û ev mijar di navbera Tirkiye û DYA'yê de bibû mijara tengezariyê.

### Rûsya jî dixwaze beşdar bibe

Li aliyê din hat zanîn Rûsya jî ji bo Operasyona Reqayê amadekariyan dike ku ev welat ji Cotmeha 2015'ê ve li Sûriyê li dijî rêxistinên DAIŞ û El Nûsrayê operasyonên hewayî encam dide. Hate ragihandin ku Rûsyayê pêşniyar ji DYA û welatên hevpeymanan kiriye da ku ji roja 25'ê Gulanê ve li Sûriyê operasyonên hevbeş pêk bînin. Wezîrê Berevaniya Rûsyayê Sergey Şoygu bixwe pêşniyara operasyonên hevbeş ên hewayî kir. Şoygu diyar kir ku welatê wî pêşniyar ji DYA û welatên hevpeymanan kiriye da ku ji roja 25'3e Gulanê ve, li dijî Eniya El Nûsra û mûxalîfên din ku rêkeftina agirbestê binpê kirine, operasyonên hevbeş pêk bînin. Wezîrê Berevaniya Rûsyayê Sergey Şorgu daxuyand ku hikûmeta Sûriyê jî derbarê vê pêşniyarê de xwedî agahî ye û got ku li dijî aliyên ku agirbest binpê kirine, welatê wî mafê xwe yê êrîşa ser wan hêzan, veşartî digre.

Herwiha Rawêjkarê HSD'ê Telal Silo jî derbarê Operasyona Reqayê de axivî. Telal Silo wiha axivî: "Em ê Reqayê azad bikin. Çawa ku hêzên me li Şedadê li dijî çeteyan serkeftî bû wê heman awayî operasyonên din jî bike."

### Rojnameger Bilo: Operasyona Reqqayê wê derbeyek mezin be li dijî DAIŞ'ê

Rojnameger Mohamad Bilo li ser Operasyona Reqqayê ku dihat çaverêkirin, agahî dan BasNûçe'yê. Bilo got ku li herêma Reqqa û navenda bajêr nêzî 700 hezar sivîl dijîn û radigihîne ku ev sivîl li bendê ne ku ev operasyon demildest destpê bike. Bilo di dewama axaftina xwe de dibêje ku 35 hezar alîgirên DAIŞ'ê li Reqqayê hene û eger operasyon bi pêşengiya Amerîkayê pêk were, wê operasyon dem kurt be û DAIŞ wê têk here."" Mohamed Bilo her wiha eşkere dike ku hevpeymana navnetewî jî amadekariyên xwe yên Operasyona Reqqayê temam kirine. Bilo dibêje ku Hêzên kurd wê bi hêzek mezin ber bi Reqqayê ve biçin û wiha pê de çû: " Reqqa navendeke girîng ya DAIŞ'ê ye. Dilê DAIŞ'ê yê li Sûriyê. Eger endamên DAIŞ'ê yên li Reqqayê bên jinavbirin, DAIŞ'ê wê li Sûriyê jî lawaz bibe. Zanyarî hene ku DAIŞ li Mûsilê jî qels bûye û endaman nabîne. Operasyona Reqqayê wê li dij hebûna DAIŞ'ê ya li Sûriyê derbekî mezin be."

### Nivîskar F. Hecî Mistefa: DYA girîngiyê dide Bendava Tişrînê

Rojnameger – nivîskar Farûq Hecî Mistefa geşedanên dawîn ên leşkerî û siyasî yên li Sûriyê ji BasNûçe'yê re nirxand. Mistefa radigihîne ku hêzên kurd dixwazin Cerablûs û Minbîcê bigirin, lêbelê DYA digel hêzên kurd amadekariyên Operasyona Reqqayê dikin û diyar dike ku DYA stratejiyeke ku rêya Iraqê li DAIŞ'ê bigire, dişopîne û wiha axivî: "Eger Reqqa bê kontrolkirin, wê DAIŞ li Sûriyê gelek lawaz bibe. Hêzên kurd zêdetir dixwazin Cerablûs û Minbicê bigirin û dorpêça li ser Efrînê rakin. DYA jî plan dike DAIŞ'ê li Sûriye û Iraqê lawaz bike. Li ser Operasyona Reqqayê rêkeftinek heye. Di demek nêzde wê Reqqa were kontrolkirin."

> Hat zanîn ku li Rojava hêzên kurdî bi piştgiriya Koalisyona Navdewletî ya li dijî DAIŞ'ê, amadekariyên operasyona rizgarkirina Reqayê dikin. Rojnamevanên ku derbarê rewşa tevgera leşkerî ya li herêmê de bo BasNûçe'yê axivîn dan zanîn ku wê hêzek ku ji 25 hezar kesî pêk tê beşdarê operasyonê bibin.

Mistefa di berdewamiya axaftina xwe de dibêje ku rayedarên DYA'yê ku serdana Kobanê kiribûn, li ser Bendava Tişrînê lêkolîn kirin û eşkere dike ku DAIŞ'ê di hefteya dawîn de êrişên dijwar anîn ser bendavê. Her wiha Mistefa diyar dike ku rayedarên DYA'yê ji bo ewlehiya bendavê pisporên leşkerî şandine herêmê. Rojnameger, Mistefa dibêje ku piştî Operasyona Reqqayê, wê operasyonên Cerablûs û Minbîcê jî werin rojevê û wiha dirêjî da axaftina xwe: "DYA jî dixwaze ku xeta Kobanê û Efrînê ji DAIŞ'ê were paqijkirin. Ketin nav hewldanên rêkeftineke di navbera HSD Artêşa Azad. Lê van hewldanan encam nedan. Tirkiye naxwaze HSD herêmê kontrol bike. Hin tirsên DYA'yê jî hene. Lê Bendava Tişrînê ji bo DYA'yê jî girîng e."



## 100 sal di ser Sykes-Picot re derbasbû

# Kurdan dawî li Sykes-Picot aniye



Hêmin Dildar

Li gor Peymana Sykes-Picot a di 1916'an de di navbera Rûsya, Fransa û Brîtanyayê de hatibû îmzekirin Kurdistan di navbera van dewletan de dihat dabeşkirin û bi awayekî fîlî ji hev dihat cudakirin. Herçend Peymana Sykes-Picot bi cih nehatibe jî peymanên li dû vê peymanê di navbera dewletên zilhêz ê cîhanê de pêk hatin xalên Sykes-Picotê bi cih anîn û Kurdistan di navbera çar dewletan de dabeş bû. Bi minasebeta sedsaliya vê peymanê li herçar parçeyên Kurdistanê û li dîasporayê panel, konferans û meş birêve diçin. Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) jî bi wê minasebetê li bajarên Bakurê Kurdistanê û li Stenbol û Îzmîrê li ser Sykes-Picotê rêzekonferansan li dar xist. Akademîsyen û zanyarên kurd ê weke Dr. Eli Teter, Doç. Dr. Yaşar Abdulselamoğlu, Dr. Ekrem Önen, Roj Mamendî û Av. Mehmet Celal Baykara di panelên PAK'ê de gotarên xwe pêşkêş kirin. Serokê PAK'ê Mustafa Özçelik, Rêvebirê PAK'ê yê Hewlêrê û akademisyen Mustafa Önen di derbarê konferansên Peymana Sykes-Picotê de ji rojnameya me re axivîn.

### Mustafa Özçelik: Divê em nexşeyên nû bi çirînin

Serokê Partiya Azadiya Kurdistanê, di derbarê konferansan de ji rojnameya me re axivî û sedema lidarxistina panelan wiha anî ziman: "Peymana Sykes-Picot di roja 16.05.1916'an de di navbera Brîtanya, Fransa û Rûsya hate îmzekirin. Rûsya piştî Şoreşa 17'ê Octobrê ji vê peymanê vekişiya. Bi Peymana Sykes-Picotê Kurdistan bû çar parçe. Peymana Sykes-Picot di sed saliya xwe de, êdî têk diçe. Gelo em ê bikaribin vê têkçûnê bikin destpêka azadî û dewletbûna Kurdistanê? Serxwebûna Başûrê Kurdistanê dê tesîreke çawa li statukoya heyî bike? Peymana Sykes-Picot destpêka projeya çarperçebûna Kurdistanê ye."

Özçelik di berdewamiya axaftina xwe de balê kişand ser parçebûn û asîmîlasyona li ser gelê kurd jî û wiha got: "Miletekî îro nifûsa wî 50 milyon e li ber çavê hemû mirovatiya cîhanê, ji hemû maf û azadiyên xwe, ji dewletbûn û serxwebûna xwe hatiye bê parkirin.Perçebûn û bindestî û bê dewletbûna miletê kurd, di hişmendî û tevna civatê de texrÎbateke mezin çêkiriye. Ew cîhana ku çavên xwe ji perçebûn û bindestiya miletê kurd girtiye, mixabin çavên xwe ji asîmîlasyon, înkar û îmhaya miletê me re jî girtiye. Îro êdî berjewendiyên cîhanê jî, bi guhertina xerîta nevçeyê û bi çirandina Sykes-Picotê heye. Divê em ligel cîhanê vê carê vê peymanê û van xerîtayen biçirînin. Mafê me yê çarenûsiyê, mafê me yê dewletbûnê mafekî rewa ye. Divê em bi biryardarî li dûv vê daxwaz û mafê xwe rawestin. Di salên 1900'î de, kurd di sehayê de, di dîplomasiyê de, di yekitî û projeyeka netewî de jî lewaz bûn; li ser maseyê jî zeyîf bûn. Jiber wê jî, gava ku Kurdistan perçebû em bê xwedî û bê hêz bûn."

### "Tu kes nikare rê liber azadiya kurdan bigre"

Herwiha Serokê PAK'ê Özçelik di dawiya axaftina xwe de amaje bi wê yekê jî kir ku li herçar parçeyên Kurdistanê kurdan dest bi hamleyan kiriye û riya azadiya kurdan ew ê neyê girtin. Özçelik eşkere jî kir ku RHK ber bi serxwebûnê ve dihere û wiha dawî li axaftina xwe anî: "Dinya ne dinya berê ye. Kurd ne kurdên berê ne. Êdî kurd aktorekî esasî ne . Li Başûrê Kurdistanê ji federaliyê, em bi ber serxwebûnê ve dimeşin. Li Rojavayê Kurdistanê li gel hemû kêmasî û şaşitiyên xwe ve jî, kurd hêdî hêdî statuyekê bi dest dixin. Li Rojhilatê Kurdistanê tevgera azadiya Kurdistanê di nav xebateke nuh de ne. Li Bakurê Kurdistanê, her çiqas bi şer û pevçûn û siyaseta wêran kirinê, dixwazin rê li ber doza azadiya Kurdistanê bigirin jî; êdî tîr ji kevanê derketiye. Tu kes dê nikaribe rêya azadiyê bigire."

### Orhan Kaya: Kurdistan îro jî di qonaxeke din re derbas dibe

Herwiha Rêvebirê PAK'ê yê Hewlêrê Orhan Kaya jî di derbarê rêzebernameyên Sykes-Picotê de yê PAK'ê de ji me de axivî û tekez kir ku eleqeyeke gelekî zêde ji bi konferansan hebû. Kaya herwiha ragihand ku heta niha zanyariyên wan ê di derbarê Peymana Sykes-Picotê de tunebûn û wan xwest ku haya kurdan ji vê peymanê çêkin ku wê peymanê nehiştiye ku kurd çarenivîsa xwe diyar bikin. Li aliyê din jî Kaya bal kişand ser beşdariya xelkê kurd a ji bo konferansan jî û wiha berdewam kir: "Li Amed, Batman, Îzmîr û li Stenbolê beşdariya xelkê me gelekî baş bû. Nîqaşên hêja pêk hatin. Em di wê baweriyê de ne ku çalakiya me tesîreke mezin li ser bîreweriya gelê me li Bakur çêkiriye. Sykes-Picot Kurdistan dabeşkiribû sed sal di ser wê re derbas dibe. Îro hin geşedan û rûdanên din hene. Dive haya me jê hebe. Me dixwest em wê peymanê bi xelkê xwe bidin nasîn û proseya ku niha Kurdistan tê de ye rave bikin."

### Dr. Ekrem Önen: Peymaneke nû durist dibe

Akademisyen Dr. Ekrem Önenê beşdarî panelên PAK'ê bû jî ji BasNûçe'yê re axivî û tekez kir ku Sykes-Picot peymana dabeşkirina dewleta osmanî bû û di dawiya dabeşkirina osmaniyan de kurdan gelekî zirar dîtiye. Önen ragihand ku pêdawîstiya kurdan bi zanîna dîroka Seykes - Picotê heye û wiha axivî: "Ji vê peymanê gelek miletên di bin desthilatdarîya Împatatorîya osmanî de bûn xisar dîtin bi teybet kurd û heta derecakê ereb. Wek tê zanîn Kurdìstan dabeşî çar perça û ereb jî dabeşî dor 15 perçeyan kir. Ji bo ku kurd bikaribin di serdema nû de siyasetek rast bimeşînin hêja ye ku dîroka Sykes-Picot bizanibin ji ber wê jî konferasên wiha wê gelek girîng in ji bo ku kurd bikaribin di serdema me de ev firseta dîrokî ku ji kurdan re hatiye kurd bikaribin baş bikar bînin. Ez wisa bawer im, di serdema me de heger kurd aqilekî selîm û ne hissî pragmatîk tevbigerin wê bi karibin destkeftîyê mezin bi dest bixin. Konferans gelekî baş bûn. Bi taybetî konferansên Diyarbekir û Batmanê pirr baş derbasbûn. Hin ciwanên ku di derbarê dîroka kurdan de hin zanyariyên nû ji konferansê wergirtibûn eceêbmayî mabûn." Di berdewamiya axaftina xwe jî de Önen da zanin ku hewldaneke weke Peymana Sykes-Picot di navbera dewletên bihêz de durist dibe û eger kurd wan geşedanên nû jî mêvanên konferansên re ravekiriye.



## Dr. Elî Teter:
# Bakur piştgiriya referandûmê dike

Hêmin Dildar

Peymana Sykes-Picot a di navbera dîplomatên Fransa û Brîtanyayê di sala 1916'an de hatibû îmzekirin tesîreke mezin li Rojhilata Navîn kir. Herçend ew peyman bi Şoreşa Octoberê bi dawî bûbe jî xalên wê peymanê bi peymanên dîtir hatin bi cih anîn. Di Peymana Sykes - Picotê de Kurdistan jî di navbera Brîtanya û Fransayê de hatibû dabeşkirin û parvekirin. Ew bernameya herdû welatan demeke dirêj li Kurdistanê berdewam kir. Lewre Fransayê demeke dirêj Sûriyê kontrol kir û bajarên Rojavayê Kurdistanê jî xist bin kontrola xwe. Herwiha Brîtanyayê jî heta piştî şerê duyem ê cihanê Iraq weke metîngerî bikaranî û Başûrê Kurdistanê jî di nava wê metîngeriyê de hesab dikir.

Beriya bi hefteyekê sed sal di ser wê peymanê re derbasbû. Peyman ji aliyê rayagiştî ya kurdan, partiyên siyasî yên kurdan û saziyên sivîl ê kurdan gelekî hat nîqaşkirin. Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) jî li bi minasebeta sedsaliya Peymana Sykes-Picotê li bajarên Amed, Wan, Batman ê Bakurê Kurdistanê û li bajarên Stenbol û Îzmîrê yê Tirkiyê rêzêebername li darxist. Akademîsyen û zanyarên kurd ê weke Dr. Eli Teter, Doç. Dr. Yaşar Abdulselamoğlu, Dr. Ekrem Önen, Dr. Roj Mamendî, Av. Mehmet Celal Baykara di bernameyên PAK'ê de gotarên xwe pêşkêş kirin û zanyariyên xwe yên di derbarê peymanê de bi mêvannên panelê re parvekirin.



### Dr. Elî Teter: Me ji bernameyên Sykes-Picotê sûd wergirt

Dr. Elî Teterê ji Başûrê Kurdistanê ye di bernameyên PAK'ê de gotarên xwe pêşkêşkiriye ji BasNûçe'yê re axivî. Teter, eşkere kir ku kelecan û coşeke zêde bi xelkê Bakurê Kurdistanê re heye û ew bi vê kelecanê wan gelekî kêfxweş e. Herwiha Teter da zanîn ku xelkê Bakurê Kurdistanê geşedanên li herçar parçeyeên Kurdistanê rû didin ji nêzve dişopînin û wiha berdewam kir: "Beşdariyeke baş û kelecaneke xurt bi xelkê me ye Bakur re heye. Haya wan ji rûdanên herçar parçeyên Kurdistanê heye. Panelên Sykes-Picotê sûdeke mezin gihand xelkê me. Bi taybetî bernameyên li Amedê û Batmanê gelekî bi coş bûn." Teter bal kişand ser bernameyên li Stenbol û Îzmîrê hatine lidarxistin jî û wiha axivî: "Kurdên me yên li bajarên Tirkiyê jî eleqeyeke baş nîşanî bernameya Sykes-Picotê dan. Coşa wan, zanyariyên wan, kelecana wan ne kêmî ya bajarên Bakurê Kurdistanê bû. Ew bala xwe didin herçar parçeyên Kurdistanê."

### Kurdên Bakur piştgiriyê didin serxwebûne

Herwiha akademîsyen Teter, çavdêriyên xwe yên li Bakurê Kurdistanê jî bi me re parvekir û ragihand ku gelê kurd ê li Bakurê Kurdistanê bi germî pêşwaziyê li rêferandûma Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) jî dikin û wiha axivî: "Em dibînin ku kelecanek bi wan jî re heye. Li benda referandûma Kurdistanê ne û gelekî dixwazin gelê kurd ê li Başûrê Kurdistanê çarenivîsa xwe diyar bike. Dizanin ku peymanên weke Sykes-Picot û Lozanê bûne hokara wê yekê ku Kurdistan ji hev cuda bibe. Ew dixwazin ew sînor êdî ji holê rabin û kurd li ser qedera xwe bibin xwedî gotin." Teter, li aliyê din destnîşan jî kir ku kurdên li Bakur piştgiriya xwe ji bo referandûma Kurdistanê jî tînin ziman û ew bi germayî pêşwaziyê li serxwebûna Kurdistanê dikin.

### "Divê YNK û Goran hesaba li ser berjewendiyên hizbî nekin"

Di dirêjahiya axaftina xwe de Teter, li ser geşedanên li Başûrê Kurdistanê jî axivî. Teter, rêkeftina YNK-Goranê bi bîr xist û eşkere kir ku ew hêvî dikin ku rêkeftina herdu arîşeyên nû durist neke û qeyranên heyî bi dawî bike. Herwiha Teter kiryarên endamên Tevgera Goranê jî bi bîrxist û wiha berdewam kir: "Em hêvî dikin ku rêkeftina YNK-Goranê ne li dijî tu aliyên siyasî û berjewendiyên netewî be. Em hêvî dikin ku rêkeftina wan qeyranên heyî çareser bike. Hin endamên Goranê hewldan ku emeliyateke siyasî li Kurdistanê bikin. Lêbelê negihiştin armancên xwe û planên wan hatin têkbirin. Eger armenceke Goranê û hevpaymanên wê yên dijî Kurdistanê hebin ew bi encam nabin." Dr. Elî Teter, li aliyê din tekez kir ku divê Goran û YNK di qonaxeke wisa de nekevin du berjewendiyên hizbî û li dora berjewendiyên netewî kombibin.

### "YNK-Goran ji bo dijayetiya PDK'ê rêkevtin"

kademisyen Teter, di berdewamiya axaftina xwer de bal kişand ser helwesta Partiya Demokrata Kurdistanê jî û anî ziman ku di ajandaya PDK'ê de serxwebûna Kurdistanê heye û PDK hêvî dike ku YNK jî nekeve nava lîstîkên Goranê û nebe şirîkê Goranê yê tehrîbkar. Herwiha Teter, ragihad ku YNK û Goran amaje li ser wê yekê dikin ku ew ê parlementoyê aktîv bikin lêbelê hêza wan tuneye ku parlementoyê aktîv bikin. Teter, eşkere kir ku eger PDK amade nebe hizbên din nikarin parlementoyê aktîv bikin. Teter, her li ser meselaya rêkefina Goran û YNK berdewam kir û anî ziman ku YNK û Gorna dixwazin li dijî PDK'ê hejmara sendeliyên xwe di kursiya parlementoyê de zêde bikin û dijayetiyê li hember PDK'ê bikin. Teter, tekez kir ku bernameya PDK'ê û stratejiyên PDK'ê jî hene û heta niha PDK'ê hewldaye rêveberiyeke şefaf li herêmê bê duristkirin û bi wê armancê çend kursî dane YNK'ê û Goranê lêbelê ew ketine dur berjewendiyên xwe yên siyasî.

Teter, bal kişand ser kiryarên Tevgera Goranê jî û wiha berdewam kir: "Di hilbijrtinan de dengê herî zêde PDK'ê anî lêbelê PDK'ê rêveberî li ser esasên hevgirtin û yekgirtina kurdan danî. Serokatiya Parlementoyê, Cihgirê Serokê Parlemenoya Iraqê PDK'ê da Goranê. PDK'ê dixwest ku Goran hem di siyaseta navdewletî jî de hem jî di siyaseta navxweyî bihêz be. Lêbelê Goranê dijayetiya PDK'ê û berjewendiyên kurdan kir. Xwestin destkestiya kurdan rêveberiya kurdan ji holê rakin."

### "Planên li dijî serxwebûnê bi encam nabin"

Di berdewamiya axaftina xwe jî de akademîsyenê ji Başûrê Kurdistanê Dr. Teter, bal kişand ser amadekariyên referandûmê jî û da zanîn ku amadekarî bi lêzgînî berdewam dikin û ew ê rêferandûm di demeke nêzde pêk were. Herwiha Teter, tekez kir ku ew ê rêkeftina YNK-Goranê tesîrê li ser proseya refarandûmê jî neke. Herwiha Teter, destnîşan kir ku çawa Kurdistan dawî li endamên DAIŞ'ê û planên li ser têkbirina destkeftiyên kurdan ji holê rakiribe ew ê planên li dijî serxwebûna Kurdistanê jî têk bibe û ew ê xeyala kurdan pêk were. Teter axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Me heta niha kar li ser serxwebûnê kiriye. Me parastina xaka xwe kir. Em ê planên dijî serxwebûnê jî têk bibin û ew ê gelê me ji bin lîstîkên rêveberiya rejima Bexdayê rizgar bikin. Divê partiyên siyasî di vê çarçoveyê de bibin yek û li îradeya kurdan xwedî derkevin. Eger wisa nebe ew ê arîşeyên din li hember me durist bibin. Diyaloga aliyên siyasî muhîm e. Divê aliyên siyasî guh bidin îradeya gelê kurd."





Rêzan Karwan

## Pêşageha Amedê
# Pirtûkên li bin siya şer de



Li Bakûrê Kurdistanê 2. Fûara Pirtûkan ya Amedê ku ji aliyê Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê ve hat lidarxistin, hefteya borî birêve çû. 2. Fûara Pirtûkan a Amedê 17'ê Gulanê destpêkir, 22'ê Gulanê bi dawî bû. Di pêşangehê de çalakiyên cûr bi cûr hatin lidarxistin. Herwiha ji dîasporayê û ji parçeyên din ê Kurdistanê jî nivîskar û helbestab hatin fûarê û pîrtûkên xwe îmze kirin. Di pêşangeha ku ji aliyê şaredariyê ve hat lidarxistin de 72 cihê xwe girt. Herwiha weşanxaneyên kurdî jî beşdar bûn û bi xwînerên kurdî re hatin ba hev.

Lidarxistina fûarê di nav aloziya li Bakûr de girîng hat dîtin. Berpirsên weşanxaneyan eşkere dikin ku kêm jî be rewşa xwîneran ji ya berê baştir e. Li aliyê din beriya pêşangeha pirtûkan ya Amedê li Wanê jî fûar hatibûn lidarxistin û di wê fûarê de jî zêdebûna weşanger û pirtûkên kurdî geşbîniyekê bi kurdan re çêdike. Em li ser rewşa pêşangeh, rewşa ziman, bandora şer û pêşeroja kurdî bi weşangeran re axivîn. Weşangerên kurdî rewşa ku kurdî tê de xerab nabînin. Herwiha destnîşan dikin ku divê hewlên giring jo bo kurdî bêm kirin.

### Gülten Kışanak: Em di mercên dijwar de pêşangehê pêk tînin

Hevşaredara Bajarê Mezin a Amedê Gülten Kışanak di merasîma vekirina pirtûkan de cih girt. Kışanak di axaftina xwe ya vekirina pêşangehê de got wan ev pêşangeh di nava şertên dijwar de pêk anîye û wiha axivî: "Di van şertan de lidarxistina fûarê ne hêsan bû. Xwendin û nivîsandin wek derman e. Em dikarin xwendin û berxwedanê biserbikevin û alaya berxwedan û azadiyê geş bikin. Divê em weşanxaneyên teşvîqî vî karî bikin."

### Ehmed Huseynî: Divê em ji xelkê re bibêjin ku em ne tenê şer dikin

Mêvanê Rûmetê yê 2. Pêşangeha Pirtûkan a Amedê Ehmed Huseynî yê ji Rojavayê Kurdistanê ye jî hat xelatkirin. Huseynî ji BasNûçe'yê re nêrînên xwe anîn ziman. Huseynî got ku di jiyana gelek netew û milatan de kêliyên şer û yên çalakiyên hunerî bi hev re derbas bûne. Huseynî wiha got: "Gabriel Garcia Marquez dibêje, 'miletê ku nizanibe govendê bigerîne wê nizanibe şer jî bike.' Ji ber wê yekê hineke astek bilind hevdû ragirin. Ji ber ku ew pirtûk bi xwe şahidên wî şerî ne, şahidên binpêkirin, çewisandin, derd, kul û êşan e. Ji ber wê yekê lidarxistina pêşangehêkê di vê rewşa awarte de gelek girîng e. Ev jî viyaneke, îradeyeke rewşenbîran e pêwîste ku em ji xelkê re bibêjin em ne tenê şer dikin em dikarin berheman jî bixwînin.

### Songül Keskin: Şer bandoreke xerab li ser pêşangehê kir

Berpisyara Weşanên Avestayê Songül Keskin di derbarê 2. Fûara Pirtûkan a Amedê û rewşa pirtûkên kurdî ji BasNûçe'yê re nirxand û got ku her sal geşbûn û pêşketinek heye lê belê dîsa li gor gelheya kurdan hê jî kêmasî heye û wiha axivî: "Ev du sal in ku şaredarî pêşangehê lidar dixe lêbelê beriya wê jî TÜYAP'ê çar salan pêşangeh vêkir. Helbet cudahiyek heye di navbera van salan de. Niha bi piranî weşanxaneyên kurdan e. Her sal zêdebûnek hebû sîrkulasyon zêde bû. Îsal rewşa Bakur xerab e lê tevî wê yekê jî min evqas hêvî nedikir. Ev 21 sal in Avesta vî karî dike. Xwînerê kurdî heye û biqelîte jî ye, lê ne zêde ye. Heta ku zimanê kurdî bi awayekî fermî neyê qebûlkirin û zaningeh, dibistan venebin û wê rewş wisa be." Keskin radigihîne ku divê kurdî ji bo kurdan bibe deriyekî debarê jî û wiha daxive: "Heta niha bi serê xwe û bi dildarî dimeşiya lê divê ji îro pê ve kurdî berbelav bibe. Di kurdî de şoreşek çêbûye. Em nikarin kurdî bidin ber zimanê tirkî û yên din ku ew ziman hemû xwedî derfetên zêde ne lê kurdî rastî gelek astengiyan hat û tê jî. Tevî hemû astengiyan kurdî dîsa heta vê astê hat. Lê li gor cîhanê hê jî rewş xerab e û qels e." Berpirsyara Avestayê dibêje şerê li Bakûr bandoreke gelek xerab li pêşangehê jî kir wek warên jiyanê yên din: "Îsal TUYAP'ê jî difikirî ku pêşangehek çêbike lê çalakiyên xwe betalkirin. Me hêvî dikir beşdarî zêdetir be. Hejmara zêde ya weşangerên kurdî gelekî baş û di her warî de êdî kurdî cih digire, lê divê hewl û xebat zêdetir be."

### Ulaş Güldiken: Zext li ser me hene

Edîtorê Weşanxaneya Aramê Ulaş Güldiken jî nêrînên xwe yên di derbarê zimanê kurdî û pêşangeha pirtûkan de ji BasNûçe'yê re vegot. Güldiken jî diyar dike ku li gor salên berê kurdî bi pêşketiye lê têrî nake. Edîtorê Aramê wiha diaxive: "Ev fûar weke alternatîf hat lidarxistin. Beriya niha di destê TUYAP'ê de bû. Yekdestiyek hebû li ser karûbarên organîzasyon û weşangeriyê. Ji bo pêşerojê ev rewş kêfê dide me. Ev ji bo xwîneran wek fersend e. Nivîskarên kurd tên û yekser xwîner û nîvîskar mixatabî hev dibin. Weşangeriya kurdî ji aliyê teknîkî, şert û merc û cureyên pirtûkan ve di nav geşedanekê deye. Ev bandorê li ser xwîneran çêdike. Ewqas weşanger hene xwîner daxwazên xwe pêşkêş dikin. Di kurdî de geşedanek girîng heye. Ev ji bo pêşerojê hêvî ye. Her sal rewş baştir dibe. Ji aliyê stratejî û polîtîkaya weşangeriyê ve hêj gelek kêmasî hene lê geşedanek heye."

Güldiken li ser serdegirtina polîsan bi ser standa weşanxaneya wan jî got, "Beriya vê yekê li Wanê fûar hebû li wir jî dest danîn ser pirtûkan. Li vir ew pirtûk li ser standê tune bûn. Lê dîsa hincetek çêkirin û hatin bergê pirtûkê yê alîqandî daxistin. Gotin, 'biryara dozgeriyê heye divê em van rakin.' Hincet çêkirin, sedemek wan zext û serdegirtinan jî ew e ku li Wanê û vir ji bo ku şaredarî û weşangeriya kurd pêşengiya vî karî dikin. Li Îzmîrê pirtûkên me yên ku qedexe jî li ser hebûn li ser standa me. lê tu kes nehat û midaxele nekir. Ji ber ku di destê wan de bû. Lê li vir kurd pêşengiyê dikin zextên wan jî zêde bûn."

### Roşan Lezgîn: Tevî şer jî rewş zêde ne xerab e

Berpirsyarê Weşanên Roşnayê Roşan Lezgîn jî li ser pêşnagehê û rewşa zimanê kurdî ji BasNûçe'yê re got ku mirov nikare bêje pir baş an xerab e. Awantajên pêşangehan gelek in. Ji ber wê yekê derfetên ku ku fûar didin mirov gelek baş in û wiha axivî: "Eleqe gelek zêde tune ye lê li gor gelheya kurdên ku zarava zazakî diaxivin zêde xerab nîn e. Divê serdemê de di cîhanê de jî rêjeya xwendinê kêm bûye. Eger em li gor şert, merc û derfetên kurmancî û zazakî bibêjin bi rastî jî ev serkeftinek e." Lezgîn dibêje ku ji ber ku kurmancî ev hezar salane zimanê medreseyê ye û her bi pêş de çûye û wiha diaxive: "Kurdên ku kirmanckî qise dikin, tenê li Bakûr hene. Lêbelê zarava kurmancî li her çar parçeyan û cîhanê kurmancî tê axaftin. Dema ku kurmancî li vir qedexe bû li aliyekî din dihat axaftin. Lê digel zextên dewletê yên li ser kurdî û gelheya kêm ya kurdên kirmanc zazakî hinekê mîna kurmancî bi pêş neket. Qedexe û polîtîkayên dewletê bandoreke gelek xerab li ser kurdî kir nehêla ku zêde bi pêş bikeve."

2. Fûara Pirtûkan ya Amedê îsal di bin siya şer û pevçûnan de birêve çû. Hemû weşangerên kurd di fûarê de cihê xwe girtin û bi xwînerên xwe re hatin ba hev. Herwiha ji dîasporoyê û ji parçeyên din ê Kurdistanê jî nivîskaran di fûarê de cihê xwe girtin û pirtûkên xwe îmze kirin.

Davut Özalp: Derûniya şer xwe di der

Xwediyê govara Kürt Tarihi û Edîtorê Weşanên Peywendê Davut Özalp di derbarê 2. Fûara Pirtûkan a Amedê û rewşa ziman û kitêbên kurdî de ji BasNûçe'yê re axivî û got ku Amed navendeke girîng e ji bo kurd û xwendevan û nivîskarên kurdî. Lewma fûareke wiha li Amedê muhîm e û diyar kir ku mixabin ji ber derûniya şerê dawî bi giştî civak hinekî bêmoral e, ew tesîr xuya dike û pêkaneke ku tesîreke neyînî jî pêk bîne. Hêviya me jî ew e ku di hêla aborî de baş nebe jî fuar û organîzasyonên wiha ji ber ku yekser bi xwendevana re em mixatab dibin û rexne û pêşniyarên wan distînin ev karekî qedirbilin û giranbûha ye."

### Muhammed Deza: Divê gelê me li kirmancî xwedî derkeve

Berpirsyarê Weşanên Vate ya ku bi zarava kirmanckî pirtûkan belavdike Muhammed Deza di derbarê fûarê de ji BasNûçe'yê reragihand ku rewşa kirmancî ne baş e û ber bi winda bûnê ve ye û got: "Ji ber wê yekê em daxwaz ji gelê kurd dikin ku hewl bidin, bixwînin da ku zarava kirmancî winda nebe. Li gor salên berê rewş baş e. Lê kêmasî hene. Standardezîkerina zazakî jî didome. Li gor girseya kurmancî ewqas xwîner tune ne. Her sal eleqe zêdetir e. Vateyê beriya 20 salan dest bi standardezîkirina zazakî kir li Ewropayê. Çend nivîskarên kurd destpê kir. Beriya wê yekê govara Vateyê hebû û wê qonaxê heta îro didome. Di nivîsa zazkî de bandora Vateyê heye û gelek nivîskar bi vê rêbazê dimeşin. Di hemû waran de em pirtûkan çap dikin. Daxwaza me ew e ku gelê me ji bo zazakî hewl bide."

"Haya me ji danûstendinên yekîtiye tuneye!"

# Hevgirtina KADEP û TKDP'ê biser neket

Rêzan Karwan



Yekgirtina di navbera partiyên kurd de taybet jî di vê rewşa şer û aloz de gelek girîng tê dîtin. Piştî 3 – 4 salên ku proseyek derbarê çareseriyê de di navbera PKK'ê û Dewleta Tirkiyê de birêve diçû û bi temamî nebe jî çek bêdeng bûbûn û hêviyek di nav gel de rûdabû. Lêbelê piştî hilbijartinên 7'ê Hezîrana 2016'an hevdîtinên di navbera PKK û Dewleta Tirkiyê de xitimîn û şerê ku ev bi salane didome, derbasî nav bajarên kurdan bû û ji wê rojê û pê ve wêrankirina bajarên kurdan destpê kir û heta niha jî ji ber şerê di navbera PKK'ê û Dewletê de bajarên kurdan di bin qedexê de ne û şer jî bênavber didome. Ji ber wê yekê di raya giştî de ji bo rê vekirina alternatîfekî yekitiya partiyên kurd gelek girîng tê dîtin û gelê kurd li benda eniyek Kurdistanî ya bihêz e.

Di rewşeke wiha de mijara Partiya Demokrasiya Beşdar (KADEP) û Partiya Demokrata Kurdistana – Tirkiye (TKDP) ket rojevê. Serokê KADEP'ê Lütfi Kıvanç û Serokê TKDP'ê Mehmet Emin Kardaş ji BasNûçe'yê re agahiyên yekgirtina herdu partiyan piştrast kiribûn û serokên herdu partiyan jî ragihandibûn ku wan biryar girtiye ku bibin yek û ev jî weke pêdiviyek binav kiribûn. Her wiha diyar kiribûn ku dê 27'ê Gulanê de bi civînekê ji raya giştî re yekgirtina herdu partiyan bê eşkerekirin.

Lêbelê çend roj piştî vê yekê ji li ser navê KADEP'ê daxuyaniyek hat belavkirin û yekgirtina herdu partiyan hat derewandin. Di daxuyaniya KADEP'ê de hat gotin ku ji bo ku bi partiyên kurd re hevdîtin bên kirin 3 kes hatine peywîrdarkirin, lêbelê tu biryarên Dîwana Serokatiyê û Meclîsa Partiyê yên yekitiya bi TKDP'ê re tune ne. Em jî li ser vê mijarê bi Cîgirên Partiya Demokrasiya Beşdar (KADEP) re ku daxuyanî bi îmzeya wan hatibû dayîn, re axivîn. Herdu cîgiran jî ji BasNûçe'yê re gotin ku biryareke wan ya yekgirtina bi TKDP'ê re nîn e û lêbelê ew amade beşdarî tifaqeke mezin ya partiyên Kurdistanî bibin.

**Nizamettin Maskan: Em dixwazin hemû partiyên Kurdistanî yekgirti bin**

Cîgirê Serokê Giştî yê Partiya Demokrasiya Beşdar (KADEP) Nizamettin Maskan li ser meseleya yekgirtina bi TKDP'ê re ji rojnameya me ragihand ku biryareke wan a bi vî rengî tune ye û wiha axivî: "Bila gelê kurd me şaş fêm neke. Em dixwazin hemû partiyên Kurdistanî tifaq û yekitiyeke mezin ava bikin. Li ser mijara yekitiya bi TKDP'ê re jî haya Dîwana Serokatiyê û Meclîsa Partiyê ji vê yekê tuneye. Tu pirsgirêka me bi TKDP'ê re nîn e. Lêbelê biryareke me ya bi vî awayî jî tuneye." Maskan di berdewamiya axaftina xwe de amaje bi wê yekê kir ku Lütfi Kıvanç ji ber sedemên aboriyê serokatiya partiyê dike û daxive: "Tenê serokê partiyê nikare biryareke wiha girîng û stratejîk werbigire. Di nava lijneyên partiyê de mijara yekgirtina bi TKDP'ê re nehatiye niqaşkirin."

**"Me 3 kes peywîrdar kiribûn"**

Cîgirê KADEP'ê li ser derketina vê mijarê jî got ku li Herêma Kurdistanê komîsyonek hatibû avakirin û endamê wan yê berê Yüksel Avşar jî beşdar bûbû û xwe weke Cîgîrê Serokê partiyê dabû nasîn û wiha dewam kir: "Tu pêwendiya Yüksel Avşar bi partiya me re nîn e. Lütfi Kıvanç û Yüksel Avşar bêyî partiyê û me bûne endamên vê komîsyonê. Me jî Dîwana Serokatiyê kom kir. Me got ku ew kesên ku bêyî partiyê tevdigerin û bi serê xwe biryaran digirin sûcdar in. Serokê Partiyê Lütfi Kıvanç jî got 'min şaşî kiriye' û lêborîna xwe xwest. Bi biryara partiyê me 3 kes peywîrdar kirin ku bi partiyên din re hevdîtinan pêk bînin. Lêbelê tu biryarên partiyê tune ne ku em bi TKDP'ê re bibin yek. Lütfi Kıvanç û Yüksel Avşar bêyî me tevgeriyan û bûne endamên vê komîsyonê." Nizamettin Maskan di dirêjiya axaftina xwe de ragihand ku ew amade ne yekitiyeke xurt ava bikin lê belê piştî vê yekê gelek zahmet e ku em bi TKDP'ê re bibin yek.

**Sait Budak: Partiyên Kurdistanî kom bibin em jî amade ne**

Cîgirê Serokê Partiya KADEP'ê ku Berpirsyarê Kar û Barên Rêxistinkirinê ye Sait Budak jî di derbarê vê mijarê ji BasNûçe'yê re eşkere kir ku mijareke bi vî awayî di partiyê de nehatiye axaftin û wiha pê de çû: "Partiya me ev nêzî 19 sal in heye û xebatên xwe yên siyasî didomîne. Di pêşengiya Şerafettin Elçi de hatiye avakirin. Niha ev mijara yekitiya TKDP û KADEP'ê tune ye ne di meclîsa partiyê de û ne jî di partiyê de tiştek wisa heye. Tenê yek radibe û biçe Hewlêrê hin hevdîtina bike û vegere bêje ez ê partiyê bikim bin sîwana TKDP'ê. Serokê partiyê ne serbixwe ye. Girêdayî meclîsa partiyê ye girêdayî Dîwana Serokatiyê ye. ji ber wê yekê nikare bi serê xwe biryarên wiha bide. Ev ne exlakî ye ku haya me jê tune be û van kiryaran bike û vê biryarê bide ku bêyî şêwîrîna me. Ev ne tiştek rast e. Beriya niha jî şaşiyeke bi vî rengî kir û lêborîna xwe xwest û me jî efû kir. Lêbelê piştî demek kirt derbas bû û tê Amedê û dikeve civîna TKDP'ê û cardin ku haya partiyê jê tune be. Çawa dikare li ser navê partiyê û bêyî endamên partiyê vê yekê bike."

**"Yekitiyek bihêz ava bibe em ê beşdar bibin"**

Budak di berdewamiya axaftina xwe de dibêje ku eger partiyên li ser xeta PDK'ê kom bibin, ew jî amade ne ku beşdarî wê tifaqê bibin û eniyek bi hêz ava bikin û wiha got, "Niha di rojevê de li ser navê me vê mijarê tînin rojevê, tiştekî wisa tuneye. Eger partî hemû kom bibin û yekitiyeke bihêz ava bikin emê jî beşdar bibin. Dibêjin ev heyameke hevdîtin pêk tên gelo çima haya endam û Meclîsa Partiyê jê tuneye? Biryareke wiha tuneye. Em weke KADEP tevlî van lîstikan nabin. Ev derew e û ne etîk e. Mafê wan tuneye ku li ser navê KADEP'ê biryarên wiha bidin. Di ser Serokatiya Giştî de Dîwana Serokatiyê heye Meclîsa Partiyê heye. KADEP nakeve bin sîwana tu kesî. Serokê partiyê tenê dikare li ser navê xwe biryar bide. Lê ev derdorên ku dibêjin em Kurdistanî ne, demokrat in kom bibin û bibin yek û partiyeke bihêz ava bibe em ê beşdar bibin. Me roja ewilî ji wan re got 'herin xwe bikin yek ji xwe em amade ne.' Lê me ne gotiye 'em ê bên bikevin bin sîwana' we."

Li Bakûr hefteya borî mijara yekitiya du partiyên Kurdistanî ket rojevê û ev yek jî ji bo yekgirtina partiyên kurd weke gavek girîng û destpêkek hate dîtin û ji baldaran ve bi kêfxweşî hat pêşwazîkirin. Lê belê hêviya yekgirtina herdu partiyên Kurdistanî biencam nebûye û tifaq ji bo bihareke din ma.

**"Em ji bo yekitiyê amade ne"**

Cîgir Budak radigihîne ku tê gotin ku KADEP bikeve bin banê TKDP'ê, gelo çima ew nayên bin sîwana KADEP'ê û eşkere kir: "Em nayên van lîstikan. Teqez em naçin bin sîwana TKDP'ê de. Lê em dixwazin ku partiyên Kurdistanî û li ser şopa PDK'ê kom bibin û bi awayekî çalak xebatan bimeşînin bo gelê Kurdistanê, em dikarin beşdarî wan bibin."

Budak di dawiya axaftina xwe de diyar dike ku ji aliyê Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê ve jî biryareke wiha ne gihaye destê wan û wiha pê de diçe: "Ji layê Birêz Serok Barzanî ve biryareke wiha tune ye. Xebateke wiha tune ye. Tiştek wisa hebûya wê em bihatana agahdarkirin. Ev propagandeyeke bê bingeh e. Em ji bo yekitiyeke xurt ya kurd û Kurdistanê amade ne. Ev xebat ji aliyê Lütfi Kıvanç û Yüksel Avşar ve hatiye birêvebirin. Yüksel Avşar ji xwe peywîreke wê di partiyê de tuneye û ne endamê partiyê ye."



Cuma Ozusan:

# Çî yo ke tarîxê ci çinê bo, talîhê ci zî çinê beno

Murad Babij



Ma do sey rojnameyê BasNûçe'yî nê hewteyî ra tepîya giranîya xo bidê edebîyatê kirdkî/dimilkî ser. Nê hewteyî ra tepîya her hewte yew nuştox do mêmanê rojnamedê ma bo. Ma do nuştoxê ke kirdkî/dimilkî nusenê û kitabanê înan şima rê bidê şinasnayîş.
No hewte mêmanê ma birêz Cuma Ozusan o. Ozusan bi nameyê "Mila Cimhayo Babij" zî yeno naskerdiş. Ma qandê/seba şima Cuma Ozusan roportajêk viraşt.

**Ma wazenê ke ti xo bi çekuyanê xoya bidê şinasnayîş. Cuma Ozusan kam o?**

Heyatê mi hendo ke bala însanan bianco rengin û serkewte nîyo. Heyatê mi heyatêko mutewazî yo û çimandê însanan vero nîyo. Werdêkeyda xo ra heta nika wendiş û nuştiş bin-geyê heyattê min o. Wendişê mi bi Quranîya dest pakerd, mi Sêwregî de Milla Xalidî het de elif bê destpakerd û Hafiz Fîkrî het de Quran xitim kerd. Dima Milla Remezan Acarlarî het de dest bi wendişê erebkî kerd. Zewbî çîyo ke ez zana mi pêro teberê mektebî de bixo wend. Ya-nê ez merdimêko "otodîdak" a.

Mi verê edebîyat, felsefe û tarîxê dînî ser ro zaf kitabî wendî la dima beşê pîsîkolojî bi bingeyê xebatanê mi. Mi serra 1963'î de Mektebê Mîyanî yê Sêwregî qedîna. Dima zî mi Kolejê Weşî yê Haydarpaşayî wend. Mi Sêwregî û Hîlwan de çend serrî melatî kerd, mi dima dest bi memurîya weşî kerd û ez ûca ra zî bîya teqawît.

Serra 1982'yî ra heta nika ez Bursa de ciwîyena. Nika zewqê min o tewr gird (pîl) odeyê min o ke bi kitabandê min a piro ronitiş, wendiş, nuştiş û fikirîyayîş o.

**Goreyê mi nuştiş, karê merdimanê wayîrderdan o. Derdê to çiçî bi mamosta? Ti çi rê nusenê?**

Belê wendiş û nuştiş bengîyê min ê, qewetê ciwîyayişî danê mi, heyatê mi kenê manadar. Xo-ra bê nuştiş û wendişî qet hunerê mi çîn ê. Ez xususandê bînan de xo însanan hemine ra kêmî vînena. Ez nuştişî zey (sey) hewes, wextê xo yê vengî ravêrnayîş nêvînena, bîlakîs ez wextê xo yê tewr qîymetinî nuştişa ravêrnena. Bi nuştişa -tabî eke bişa- ez wazena paştî bida fikrê însanetî.

Ez nê fikirdê xo de çend serkewteya nêzana labelê nuştiş de amacê mi no yo. Ez çîta tayê berz tepêşena çunke her kar û xebat ancax bi hedefêko berza bena kalîteyin. Eke kes enerjîyê xo hemine nêdo kardê xo, o kes nêşeno ser bikewo. Ez zî bi no fikra rindî û xirabîda kesî nêveyena. Ez wazena ke însanî bifikirîyê, wexto ke ez vînena însanî bi nuşteyandê min a çîyên sero fikirîyenê ez şad bena. Eke ez bi kilmî vaja; derdê min ê wendiş û nuştişî xo aver-berdiş û însanetîya xo qezençkerdiş o. Na ray (rayîr) de ecibnayişê wendoxan zî kêf dano mi?

**Mamosta heta nika xeylê maqaleyê to neşir bîy, kitabê to yê Tirkî vejîyayî, hîkayeyê nuştişî yê her kitabî cîya yo. Ti eşkenê ma rê behsê nuştişê "Sîyerî Nebî" bikerê?**

Mi nuştişê Sîyerê Nebî serra 1998'î de dest pakerd, ez des mengî (aşmî) sero xebityaya û serra 1999'î de qedîna. Meqsedê mi dimilkîya (kirdkî) Sêwregî vinî nêbo û zey belgeyêna tarîx de cayê xo bigîro. Verê coy mi waşt ke ez dimilkîya Sêwregî sero jew gramer binusa, mi dest zî pakerd la dima mi verada. Dimilkîya Sêwregî goreyê mi formo ke tewr averşîyayî ya. Celadet Bedirxan zî wexto ke dimilkî ra behs keno zafane dimilkîya Sêwregî ra nimûneyî dano. Verê ney se serre zî Sêwregî sûkêna qedîm bî û nika zî goreyê nifûsî mintiqayanê bînan ra veşêrî ya. Qandê coy ez hewna zî fikirdê xo da.

Edebîyatê dimilkî (kirdkî) yo nuştekî zaf newe yo. Eserê tewr verênî Mewlîdê Xasî û Mewlîdê Usman Efendîyo Babijî yê. Heta nika zî çorşmeyê 200 kitabo dimilkî ameyo çapkerdiş. Kitabê mi warê xo de kitabo sifteyên o. Çunke heta nika sey manzumî qet sîyer nêameyo nuştiş.

Mamosta seke ti zî zanê Unesco ra derheqê ziwan û lehçeyê ke tehlukeyê vindîbîyayişî de yê yew rapore weşanîyena. Daldeyê xeylê munaqeşeyan de kirdkî/dimilkî zî na rapor de ca gêna. Ti na mesela ser ro çi fikirênê? Ti tîya ra -xususî gencan rê- wazenê se vajê?

Wexto ke behsê nê meseleyan beno ez zaf xemgîn bena. Ez kesîya nêşena werey bêra. mi ga-ma verên zî behs kerd; mi waşt ke ez gramerê binusa, heme çî hazir bi, tenya (tena) nuştişê ci mend bî. Dima mi kitabê dimilkî vînayî û ez ewnîyaya pêro cîya-cîya yê mi gramerî ra fek verada. Çunke dimilkîyêna standart çinîya, xeylê dimilkî yê cîyayî est ê. Fekê Sêwregî û fekê Dêrsim hendo ke pê ra durî yê, hema-hema bîyê lehçeyê cîyayî. Gerek no kar temam bo. Eke standartbîyayişê ziwanî temam nêbo; ne eserê îlmî, ne edebî ne zî eserê felsefî nênusîyenê. Wina nêbo nuşteyî pêro zey belgeyêna manenê. Beno ke dima xebata standartîzasyonî rê benê malzeme.

Fikrê mi; nika wa her kes binuso û wa kes kesî rê nêvajo "raşt ê min o, ê to xelet o", nika wa her kes goreyê mintiqada xo binuso çunke nê nuşteyî do meşt lazimî bê. Qandê dimilkî standartîzasyon zaf zor û durî aseno, belkî se serre lazim a.

Ez ziwannas yan zî pisporê ziwanî nîya, labelê mi ziwan û gramerî sero wendo. Ez esasanê bingeyîyanê gramerî zana. Mi gramerê rirkî, erebkî, franskî, dimilkî û kurmanckî pêya miqayese kerdî û wendî. (Çi heyfo ke ê yê ke ziwanî sero gurweyenê nê karan nêkenê) Ez hetê gramer û ziwannasî ra xeletîya nuşteyan vînena û ez zaf qehirêna, xemgîn bena. Ez ewnîyena ke amacê tayê nuştoxan averberdişê ziwanî nîyo, nijadperestîya ziwanî kerdiş o. Kam o ke ziwanî sero nijadperestî bikero mumkun nîyo, o nêşeno ser bikewo. Nijadperestîya ziwanî kerdiş xetayêno gird û rayêna girotî ya. Ê yê ke ziwanî de nijadperestî kenê; Cînayet kenê la-belê nêzanê ke ê yê se kenê. Miletanê bînan zî wextê xo de nê xetayî kerdê û zirar dayo zi-wandê xo. Gerek ma tarîxê miletanê bînan ra ders bigîrê.

Çi heyfo ke tayn nuştoxê ke kurmanckî yan zî dimilkî nusenê nê qaydeyî qebûl nêkenê û go-reyê înan ê yê ziwanî rê xizmet kenê. No cînayet o. Jew kelîma şarî senîn qebûl kerda gerek nuştoxî zî goreyê şarî hereket bikerê û a kelîma qebûl bikerê. Ma nêşa no "gramernuştoxanê" dimilkî rê qebûlkerdiş do.

**Qet kelîmeyî do nêvirazeyê?**

Tabî do virazeyê labelê mantiqê ziwanî mîyan de, bi zanayîşa, eke şar qebûl bikero û heyatê xo de ca bido ê kelîmeyan problem çinî ya. Xora eke şar qebûl nêkero zî a kelîma mirena û bena vinî. Viraştişê kelîmeyan zî winî karê her kesî nîyo, no kar karê zanayan o. Merdim o ke xebera ci lînguîstîk ra gramer ra û ziwananê bînan ra çinî ya nêşeno kelîma virazo. Ewro ma ewnîyenê ke keso televîzyonanê kurdkî temaşe nêkeno. Çi rê? Çunke ziwanêno fabrîkasyon hetê şarî ra nîno qebûlkerdiş. Jew ziwannas derheqê na mesela de wina vano: "Çî yo ke tarîxê ci çinê bo, talîhê ci zî çinê beno".

Ziwan nijadperestî rê beno feda. Goreyê xo qaydeyê ziwanî est ê, ziwan organîzmayêko ganî yo, her kes goreyê kêftê xo nêşeno ziwanîya kay bikero. Ziwan qandê têkilî yo û têkilî zî tewr kêmî mabênê di merdiman de bena, eke jew merdim xo het ra ziwanê virazo û o bîn ci fam nêkero çi manaya ziwanî manena? Ez wina zana. "Ganê mi wina wazeno" ya nêbeno.

## Kitabê Sîyerê Nebî

Kitabî yê ke cuyê (heyatê) Hz. Pêxemberî ra behs kenê, nameyê nê kitaban o pêroyî; Sîyer o Nê warî de heta nika bi ziwananê cîya-cîyayana zaf kitabî ameyê nuştiş.

Kitabê Sîyerê Nebî hetê Cuma Ozusanî ra serra 1999'î de nusîyayo û serra 2009'î de weşanxaneyê Nubiharî ra vejîyayo. Sîyerê Nebî kirdkî/dimilkî de kitabê sîyerî yo sifteyêno ke bi şeklê nazimî ya nusîyayo yo.

Nuştox destpêkê kitabî de wina vano: "mi waşt ki bi nê gurweya(xebata) ez hem xizmetêndo dînî hem zî neteweyî bikera... ez hêvîdara kî ê yê ke ma dima yenê wa edebîyatê ma ravey (aver) berê. Kitabê "Sîyerê Nebî" 23 qisiman ra muteşekkîl o. Her qisim xo mîyan de behsê yew babete keno.





## Navenda rewşenbîr û hunermendan:

# Çayxaneya Miçko dîroka Hewlêrê ye

Baran Şaxî

Çayxaneya Miçko, an ku Çayxaneya Rewşenbîran, li bin deriyê rojhilat ê Kelha Hewlêrê ye û li ser cadde ya sereke ya dora kelhê ye. Dikeve berambere Sûka Qeyserî û parka nav bazarê. Xelkê Hewlêrê ji zarok heta mezin, tev de vê çayxaneyê nas dikin. Lê di rastiyê de navûdengê qehwexaneyê ji sînorên bajarê Hewlêrê jî derbas kiriye. Ew kesên ku ji bo kar an jî geştê ji derve tên Hewlêrê jî dibin mêvanê vê çayxaneya dîrokî. Xwedanê niha yê çayxaneyê Mistefa Mûhsîn Miçko dibêje: "Hewlêr bi kelha xwe û mînareya dîrokî tê nas kirin. Lê Çayxaneya Rewşenbîran jî herweke wan, mîna Sûka Qeyserî cihek diyar û mîrasek girîng ê Hewlêrê ye."

Çayxaneya Miçko ji du beşan pêk tê, beşa jûr û beşa ber derî. Li ber deriyê çayxaneyê rêzên kursiyan hatine danîn û pirranî di danên sibê û êvaran de mêvan li vî beşî rûdinin. Lê beşa jûr, pir taybet e û hemû danên rojê de mêvan lê berhev dibin. Wexta mirov dikeve jûr ve, yekser nasnameya vê çayxaneyê xwe eşkere dike û diyar dibe ku ne mîna çayxaneyek asayî ye. Li pişt dezgeha dezgedarî du pirtûkxane pir bi pirtûk hene. Li hola yekem wêne û belgeyên rewşenbîr û hunermendên navdar ên xwecîhî hene. Hola piştê jî bi banê xwe yê hêkanî û kursiyên xwe, hewaya salonek dîrokî dide.

### Çayxaneya Rewşenbîran

Xwedanê îro yê çayxaneyê Mistefa ji bo BasNûçe'yê wiha behsa malbata xwe û çayxaneyê kir: "Navê min Mistefa Mûhsîn Mecîd e. Bapîrê min Mecîd Îsmaîl Mistefa ku weke Miçko dihate naskirin ev çayxane ava kir. Navê Miçko bixwe, ji kurtkirina navê Mecîd tê. Weke nasnavekê ye. Çawa ku ji Hesen re dibêjin Heso, ji Mihemed re dibêjin Heme, navê bapîrê min Mecîd jî di nava xelkê de Miçko bûye. Ew mirovek bejin kirt û pir çalak bûye, lewma di nav hemû xelkê de hatiye naskirin û xelkê ev nav ji bo wî danîne. Dîroka vê çayxaneyê pir kevn e. Miçkoyê bapîrê min ev çayxane di sala 1940'î de ava kir. Lê beriya vê derê, di nava Sûka Qeyserî de jî çayxaneya wî hebûye. Mixabin em dîroka wê çayxaneyê baş nizanin. Lê mirov dikare bêje ku ew xwediyê yek ji kevintirîn çayxaneya bajarê Hewlêrê bûye. Niha hindek ji wan çayxaneyên kevn hatine girtin û ji cihê xwe nemane. Lê çayxaneya Miçko jiber hindek taybetmendiyên xwe heta îro jî maye. Tê gotin ku cihê vê çayxaneyê di dema xwe de dîwanxaneya mîrzayekî serdemê bûye. Berî ku mêvanan hildin nav kelhê, li vir pêşwaziya mêvanên xwe kiriye û ligel wan rûniştiye. Qata serî jî cihê civîn mayîna wan mêvanan bûye. Her jiber vê yekê ye jî cihê çayxaneyê pir diyar e û nas kiriye."

Mistefa Mûhsîn Miçko dibêje di destpêkê de ev çayxane bûye cihê rûniştina rewşenbîr û hunermendan û wiha berdewam dike: "Miçko bixwe ne hunermend û nivîskar bû. Li mirovek hunerdost û mirovhez bû. Wî gelek girîngî dida çand û folklora kurdî. Di destpêkê de jî ev çayxane bûye cihê nivîskar, rewşenbîr, siyasetmedar û hunermendan. Rewşenbîr û heyran û lawikbêjên navdar ên weke Tahir Tofîq, Hesen Sîsawa, Elî Merdan, Mihemed Ehmed Erbîlî û yên din serdana vê derê kirine û ev der bo xwe kirine mesken. Her di vê çayxaneyê de jî stranên xwe tomar kirine û ev der weke stûdyo bikar anîne. Ji ber vê yekê jî navê çayxaneyê li ser zimanê xelkê bûye "Çayxaneya Rewşenbîran."

### Çayxane bûye hola xizmetkirina karên hunerî û rewşenbîrî

Mistefa Miçko diyar dike ku bavê wî jî li ser şopa bapîrê wî meşiyaye û 50 salan li ser heman kevneşopiyê kar kiriye: "Piştî wefata bapîrê min, bavê min Mûhsîn jî ji bo wefadariya mîrateya wî, li ser heman rêçê meşiya. Wî jî ev der kire meskenê xelkê Hewlêrê û bi taybet jî rewşendbîr û hunermendan. Ew jî di nav xelkê de bi mirovdostiya xwe tê naskirin. Her deverek xwedan nasnameyekê ye û wê nasnameya xwe heye. Nasnameya vê çayxaneyê jî vedigere ser karê ku tê de hatine kirin. Yekem televîzyona Hewlêrê ya gel di salên 1970'yê de li vî çayxaneyê hatiye danîn. Xelkê ji bo temaşekirina televizyonê berê xwe daye vê derê. Di vî çayxaneyê de, li gel tomar kirina stranan, gelek caran konferans û semîneran wêjeyî û helbestan hatine kirin, pêşangeha wêne û tabloyan hatine nîmayîşkirin. Ev kar tev de bêyî berjewendî û bêyî beramber, bi taybet jî ji bo alîkariya mirovên rewşenbîr û hunermend hatine kirin. Dîsa di vî holê de film û xelekên rêzefilman jî hatine tomar kirin. Yekem car di sala 1976'ê de ev çayxane bûye hol û seta tomarkirina fîlmekê. Niha wêneyê piraniya wan hunermend û rewşenbîrên ku serdana vê derê kirine, di dîwarê çayxaneyê de cih digrin. Ev yek, nîşana rûyê rewşenbîrî ya dîroka şaristaniya Hewlêrê ye, herwiha rêzgirtine li hember rewşenbîr û hunermendan. Ji ber ku ew nûnerê çand û kultura gelê me ne, ew nirxên me yên herdemî ne."

Çayxaneya Miçko, bi navek din Çayxaneya Rewşenbîran, yek ji cihê girîng û diyar ê bajarê Hewlêrê ye. Çayxaneya dîrokî di bin Kelha Hewlêrê de ye û bo ciwan û hevdîtinan rawestgahek sereke ye. Çayxane di sala 1940'î de hatiye avakirin, ji wê demê û vir ve gelek rewşenbîr û hunermend, heta siyasetmedar û dîplomat bûne mêvanê vê çayxaneyê. Xwedanê yekem ê çayxaneyê Miçko ye û niha jî neviyê wî çayxaneyê birêve dibe.

Xwedanê niha yê çayxaneyê Mistefa Miçko dibêje yek ji girîngtirîn xisletê vê çayxaneyê ew e ku ji bavûkalan maye û ev e sê nifş in heman karî dikin û wiha berdewam dike: "Min bixwe zanîngeh xwend. Ez derçûyê başa Bazirganiyê ya zanîngehê me. Ti pêwendiya beşa xwendina min û bi karê min ê îro ve nîne. Lê min pişeya xwe li gor xwendina xwe diyar nekir. Lewma jî biryara min ew bû ku ez jî li ser şopa bavûkalên xwe bimeşim. Ya rastî cihê vê çayxaneyê pir girîng e. Heger ev der bê girtin wê ew mîrasa mezin ji dîrokê rabe. Hindek akînciyên Hewlêrê hene, ji sala 1960 û 70'yan ve serdana vê derê dikin. Ew jî bûne beşek ji vê çayxaneyê."

### Navê Çayxaneya Mişko di nava Ansîklopediya Geştiyariyê de ye

Mistefa Miçko dide zanîn ku weke bavê wî bixwe jî çand caran çayxane li ser sîmaya xwe ya dîrokî nûjen kiriye û wiha dibêje: "Di sala 1998'ê de çayxane hate restore kirin. Pirtûkxane jî diyariya rewşenbîrê şehîd Şêx Şewket Êzdî ye û hemû pirtûkên wî jî di nav de cîh digrin. Di sala 2006'ê de jî bi alîkariya Serokwezîrê demê Nêçîrvan Barzanî ev der hate nûjenkirin. Di sala 2012'ê de jî bi alîkariya kak Fazil Mîranî çayxaneya me carek din hate dîzayn û restorekirin. Di van demên nêzîk de bernameya me heye ku carek din nûjen bikin.

Mistefa Miço dibêje bi tevê hunermend û rewşendbîran, siyasetmedar û dîplomat jî serdana çayxaneyê kirine û li vir wêne girtine. Lewma jî gelek caran xelk ji bo dîtina van kesan jî tên çayxaneyê: "Ew kesên ji bo serdana şûnêwarên dîrokî û folklorî yên Hewlêrê û herwiha dîtina Kelha Hewlêrê jî tên, li çayxaneya me dibin mêvan. Navê Çayxaneya Miçko di nava Ansîklopediya Geştiyarî ya Hewlêrê de ye. Di ansîklopediyê de bi sê zimanên kurdî, erebî û îngîlîzî, derbarê çayxaneyê danasînek kurt jî cîh digre û dibêje ku vê çayxaneyê heta niha jî sîmaya xwe ya dîrokî parastiye. Rojane gelek geştiyar serdana wê derê dikin. Hûn dizanin bi taybet piştî 2003'yan Hewlêr bûye navendek girîng ê dîplomasî û siyasetê. Ji wê demê û vir ve, serqonsol û dîplomatên Amerîkayê, Fransa, Almanya, Tirkiye, Kirwatya, Kore û gelek welatên din hatine vê derê rûniştine, wêne girtine. Siyasetmedarên kurd, Qubat Talabanî, Sefîn Dizeyî, Fazil Mîranî, Kosret Resûl, Newzad Hadî û Sedî Ehmed Pîre, hunermendên vê serdemê yên weke Hely Luv, Ednan Kerîm, Homer Dizeyî û Sabir Kurdistanî gelekên din hatine vê derê û pêşwaziya mêvanên xwe kirine. Ew der bûye cihê hevdîtinên wan. Xelk jî dema wan kesayetan li vir dibînin zêdetir rû li çayxaneyê dikin û ligel wan wêneyan digrin.

### Deftera bîranînan a çayxaneyê jî heye

Di çayxaneyê de defterek bo nivîsandina bîranînên geştyaran û herwiha li ser tora civakî ya facebookê jî navnîşan û rûpelek a Çayxaneya Miçko heye. Mistefa Miçko di derbarê vê yekê de jî wiha dibêje: "Hizrê danîna Deftera Bîranînan ya min bû. Ev e 6 sal in em defter digrin. Geştyarên biyanî û kesên navdar di rûpelekê de hest û nêrînên xwe yên derbarê Hewlêr û çayxaneyê de tê de dinivîsin. Herwiha li ser facebookê jî navnîşana me heye. Kesên tên vê derê wêneyên xwe digrin û bo me dişînin. Em jî wêneyên wan li ser navnîşana xwe parve dikin. Gelek wêneyên me yên kevn û nû kom bûne. Projeyeke me heye ku em bi wêneyan albûmek taybet çap bikin û herwiha pirtûka dîroka çayxaneyê jî binivîsin."